

Serokê Konseya Rêveber a KCKyê Murat Karayilan bersiva pirsên Rûdawê dan:

Em bi Tirkiyeyê re gihîştine astekê... 10/11

9

شانۆكار هاوڕێ زەنگەنە

حەوت ساڵە چاوەڕوانە



Wêne: Rûdaw

Hejmar/Nr. 120
03 Mijdar / November 2011

Rûdaw

ÇAPA EWROPA

Rojnameya Kurdên Diyaspora

Deutschland 1,50 Euro | Österreich 1,50 | Belgium 1,50 Euro | Danmark 15,00 DKK | France 1,50 Euro | Nederland 1,80 Euro | Norway 15 NOK | Schweiz 2,70 CHF | Sv...



# Artêşa tirk ÇEKÊN KIMYEWÎ li dijî PKKê bi kar tîne?

Kesên ku cenazeyên gerîllayan dîtin: Cihê guleyan li ser cenazeyan tune bûn! 4/5

Cenazeyên komek gerîllayên PKKê ku di encama êrişek artêşa tirk de hatin kuştin



50 sal di ser Peymana Kar a di navbera Almanya û Tirkiyeyê de derbas bûn:

Du Kurdên destpêkê jî çîroka hatina xwe vedibêjin 6

## Pêşbirka Întegrasyonê
# 3 ciwanên kurd hatin xelatkirin


Mazlum Kadah di dema xelatwergirtinê de


Emel Aydogdu


Tahli Burunacik

**Koln (Rûdaw) -** Bi helkefta 50 saliya "Peymana Kar di navbera Almanya û Tirkiyeyê" de, pêşbirkek bi navê "Heimat Almanya – Zeig uns Dein Deutschland" (Welat Almanya - Almanya xwe nîşanî me bide) hate destpêkirin. Bang li ciwanên alman û yên esilbiyanî hate kirin ku bi berhemên xwe tevlî pêşbirkê bibin û heta destpêka Cotmeha 2011ê gelek berhemên bi cureyê wêne, vîdyo, deng, nivîs û huner gihiştin jûriyê. Li ser malpera www.heimat-almanya.de her kesî dikarîbû dengê xwe bide û roja 25ê Cotmehê 2011 li Berlînê di çarçoveya daxuyaniyeke çapemeniyê de deh berhemên herî baş hatin eşkere kirin.

Di nav 10 berhemên ku ji aliyê jûrî ve hêrî zêde hatin ecibandin, berhemên herdu ciwanên kurd Mazlum Kadah (19) û Tahli Burunacik (24) jî hebûn. Helbesta Mazlum Kadah a bi navê "Füße, Hände, Köpfe" (Pî, Dest, Serî) di pêşbirkê de bû sêyemîn û kurteçîroka Tahli Burunacik a bi sernavê "Meine Heimat-Deine Heimat - Unsere Heimat" (Welatê min - Welatê te - Welatê me) jî di rêza 7. de cîh girt.

Xwendekara kurd a ji Bochûmê Emel Aydogdu ya 21 salî jî ji aliyê juriyê hêjayî xelata taybet hate dîtin. Emel bi çend xebatan tevlî pêşbirkê bû ku di nav wan de hevpeyvînek vîdyoyî bi dapîra wê re jî hebû. Nirxê xelata taybet a bi navê "Expedition Almanya" 4000 Euro ye û Emel Aydogdu wê di çarçoveya vê xelatê de li gelek bajarên Almanyayê bigere.

Di pêşbirkê de berhema Azize Avci ya 16 salî ji Tirkiyeyê bû yekemîn. Di berhema bi navê "Deutsch und Türkin" (Alman û Tirk), Azize Avci behsa malbata xwe dike û bi qezenckirina vê xelatê Azize Avci wê çar rojan serdana Stenbolê bike.

# Swêdê paşve şand, li Îraqê hat serjêkirin

Termê Kurdekî êzîdî van rojan serjêkirî li Başûrê Kurdistanê hate dîtin. Sala 2010ê ew ji Swêdê bi sedema ku ewlekariya jiyanî wî ne di metirsiyê de ye, bo Îraqê paşve hatibû şandin

**Koln (Rûdaw) -** Kurdekî êzîdî yê ku serlêdana wî ya panabertiyê ji aliyê Swêdê nehat pejirandin û ji wî welatî hat dersînorkirin, li navbera Kerkûk û Silêmaniyê serjêkirî hate dîtin.




Li gor nûçeyek beşa kurdî ya radyoyê swêdî "sverige-radio", Xalid Xwedêdayê 27 salî hevjîn û kurekî şeş mehî li paş xwe dihele. Xalid Xwedêda sala 2007ê ji gundê Sirêçkayê yê navbera Kerkûk û Silêmaniyê koçî Swêdê dike û ji wî welatî mafê penabertiyê dixwaze, lê serlêdana wî tê redkirin û di dawiya 2010ê de biryara dawî ya redkirina serlêdana wî tê dayîn. Li ser vê yekê Xalid Xwedêda xwe radastî polîsên Swêdî dike û ew bo Îraqê paş ve tê şandin.

Li ser awayê kuştina Xalid Xwedêda, kurapê wî Fewaz Xwedêda wiha ji "sverige-radio re diaxive: "Destpêka vê hefteyê li rêya navbera Kerkûk û Silêmaniyê laşê Xalid yê gurandî hat dîtin. Di xew de serê wî ji aliyê kesekî ji başûrê Îraqê ve tê birîn û du birayên wî bi çakûçan tên birîndarkirin." Derbarê karê Xalid Xwedêda yê dawî jî, birêvebirê Mala Êzîdiyan li Helsingborg, Ferman Xelîl, ji "sverige-radio re dibeje ku "Xalid Xwedêda li Kerkûkê di gazînokê de wek karker dixebitî. Kesek ji Necefê tê û çend rojan bi wan re kar dike, paşê êvarekê dema Xalid û birê xwe di xew de ne, ew Xalid dikuje û birayên wî birîndar dike." Li gor agahiyên ku Ferman Xelîl dide "sverige-radio, mêrkuj reviyaye û nehatiye girtin.

Berpirsê Çapemeniyê yê Daîreya Koçê ya Swêdê (Migrationsverket) Johan Rahm jî derbarê kuştina penaberê paşveşandî dibeje ku ew jî bi rêya çapemeniyê bi kuştinê Xalid Xwedêda hesiyane û ji bilî wê ti agahdariyên berfireh destê wan de tune.

## Peyamên we belaş tên belavkirin

Hûn dikarin peyamên sersaxiyê, pîrozbahiyan, agahiyên derbarê hemû cûreyên çalakiyan bi rêya e-mail a me (**info@rudaw.eu**) ji me re bişînin. Bi şertê ku nivîsên we ji 100 peyvan ne dirêjtir bin, em ê wan li vir belaş biweşînin.

Yehya Silo




**Rûdaw**
**Rojnameyeke siyasî û heftane**
**Xwedî**
Rudaw Media GmbH
**Sernûser**
Ako Mihemed
akopress74@yahoo.com
**Rêvebirê Nivîsînê**
Nasredîn Akyol
nasredin@rudaw.eu
**Redaksiyon**
Firat Kelehkî
kelehkî@yahoo.com
Mehmet Sebatli
sebatli@hotmail.com
Besam Mistefa
wardoz@gmail.com
Mihemed Tahir
mtahir2011@windowslive.com
**Dîzayner**
Hamdullah Yumlu
**Îdare û belavkirin**
Mustefa Sefîq Edilbî
gare2005@hotmail.de
**Şêwirmendê yasayî û aborî**
Ayhan Çiftçî
**Marketing û reklam**
Mansour Sedghi
m.sedghi@rave-online.org
**Navnîşan**
Rudaw Media GmbH
Gutenbergstr. 63a
50823 Köln/Germany
**Pêwendî**
Telefon: +49 (0) 221-26 00 40 02
Telefax: +49 (0) 221-26 00 49 81
www.rudaw.net / www.rudaw.eu
info@rudaw.eu
**Belavkirin / Vertrieb:**
Axel Springer Vertriebsservice GmbH
Süderstraße 77
20097 Hamburg
www.as-vertriebsservice.de
Rûdaw ji bo nivîsên ku bi nav tên weşandin ne berpirsyar e.

### Li Sûriyê Civata Nîştîmaniya Kurd hat ragihandin û biryar da:

# Em bêyî opozisyona Sûrî ligel rejîmê gotûbêj nakin!




**Hêmin Xoşnaw / Hozan Robar**

Kongreya damezrandina Civata Nîştîmanî ya Kurd li Sûriyê di bin sloganên weke "berbi dewleteke demokratîk, parlamenî û piralî ku mafên netewiyên Kurdan misoger bike" û "naskirina gelê kurd weke pêkhateyeke sereke ya welat ji aliyê destûrê" karên xwe bi dawî anîn. Partiyên siyasî yên kurd ên beşdarên kongreyê bûn vê bûyerê weke "karekî pir bi nirx" binav kirin, lê hin aliyên din ên kurd vî weke kongrekî netewî nabînin.

Kongreya damezrandina Civata Nîştîmaniya Kurd li Sûriyê piştî ku çend caran hat paşdexistin, roja 27ê Cotmehê bi beşdariya 250 nûneran (100 nûnerên partiyên siyasî û 150 kesayetên serbixwe) li bajarê Rojava Kurdistanê Qamişlo karên xwe bidawî anîn.

Organîzerên kongreyê ji 11 partiyên ku berê di bin sihwana civateke bi navê Civata Bilind a Partiyên Siyasî de civiyabûn, pêkhatin. Lê Partiya Yekîtiya Demokratîk PYD berî destpêkirina kongrê paşdekişandina xwe ji vê kongreyê ragihand. Tevî ku berpirsên PYD wisa ragihandin ku ev paşdekişîna wan nayê wateya paşdekişîna ji Civata Bilind a Partiyên Siyasî, lê beşdarên kongreyê di daxuyaniya dawiyê de ragihandin ku hemû ew çarçoveyên din ku berê partiyên beşdarên kongreyê tê de bûn weke hilweşiyayî wê bên naskirin û tenê ev civat nûnertiya wan dike.

Kongreyê serkirdayetiyeke 45 kesî bo Civata Nîştîmanî Kurd hilbijart ku tê de 20 nûnerên partiyên siyasî ne, 6 jî nûnerên lawan in û 19 jî kesayetên serbixwe ne. Endamê Polîtburoya Partiya Yekîtiya Kurd, Fuad Elîko ku yek ji beşdarên kongreyê bû bo Rûdawê got: "Ev bi hemû pîvanan kongreyeke nîştîmanî û netewî bû."

Lê grûbên lawan û hin partiyên kurdî di wê baweriyê de ne ku ti sîmayekî netewî bi vê kongreyê ve diyar nebû û ew vê weke "kongreya partiyên kurdî" wesif dikin.

Berdevkê Hemahengiya Ciwanên Sewa ku bi bandortirîn grûba ciwanan e bi taybetî li navçeya Rojava Kurdistanê Cizîrê, Ciwan Yusif got: "Divê hemû tebeqên civakê beşdarî kongreyekê bibin da bibe kongreyeke netewî û nîştîmanî. Divê ajenda hebe ku karên kongreyê li ser wê bimeşin."

Wî herwiha got "ev kongreya 10 partiyên kurdî bû û her yekî 20 nûnerên xwe şandibûn kongreyê. Hin nûneran jî bi navê kesayetiyên serbixwe û hemahengiyên ciwanan beşdarî kirin, lê ev hemahengiyên ciwanan çend rojan berî kongreyê hatin avakirin bi mebestên partîtî û ti bandora wan li ser cada kurdî nîne."

**Grûbên lawan û hin partî ti sîmayekî netewî di kongrê de nabînin û weke kongreya partiyan wesif dikin**

Endamê Buroya Têkiliyên Baska Dahatû, Hêrvîn Osê ku berî demekê sekreterê wan Meşel Temo hat kuştin, di wê baweriyê de ye ku ev hêzên her roj li ser cadeya nin beşdarî vê kongreyê nebûne. Wî got: "Siyaseta dûrxistina hêzên siyasî yên din ji kongreyê hat meşandin bi rêya ferzkirina mercên partiyên siyasî yên beşdarên kongreyê." Hêrvîn Osê derbarê îmkana ku kongre bibe bingehek bo nehêştina wan kêmasiyên berî sazkirina kongreyê hebûn, dibêje: "Ji ber ku bingehên kongreyê ji konseptên demokratî û serdemî dûr in û xwesteka xweferzkirinê pêve diyar e, loma nikare bibe wesîleya cîbicîkirina xwestekên xelkê ser cadeyê."

Siyesetmedarê serbixwe yê kurd, Selah Bedredîn di wê baweriyê de ye ku ne mafê vê kongreyê ye xwe netewî bide qebûl kirin. "Ev kongreya partiyên siyasî ye û nûneriya hemû Kurdan nake. Lê di heman demê de ev pêngaveke baş e ku 10 partiyên kurdî bibin yek. Tevî ku ew ji destpêka damezrandina xwe yek in, û bernameya wan jî yeke." Wî herwiha got: "Sazkirina kongreyê dereng ma, pêwîst bû ev li destpêka şoreşa Sûriyê bihata sazkirin yan jî piştî şoreşê. Lewma sazkirina kongreyê di vê demê de bê wate ye."

Kongreya damezrandina Civata Nîştîmanî ya Kurd li Sûriyê bi çend biryaran karên xwe bi dawî anîn. Yek ji wan mesela gotûbêjkirin yan gotûbêj nekirina ligel rejîmê bû. Kongreyê di vê derbarê de biryar da ku aliyê kurdî bêyî opozisyona Sûrî ti gotûbêjan ligel rijêma Sûriyê nake. Herwiha kongreyê derbarê mesela rûxandina rijêma Sûriyê dakokî li ser guhertina bingehîn a rejîmê, derbasbûna dema sîstema totalîter û tek partîtiyê kir.

Lê Ciwan Yusif di wê baweriyê de ye ku armanca vê kongreyê tenê ew e ku xwe ji opozisyona Sûriyê cuda bike: "Ev kongre xweamadekirineke bo gotûbêjan ligel rejîmê û ew ê vê projeyê ligel opozisyona Sûriyê cîbicî bikin. Ev partiyên siyasî yên ku beşdarî kongreyê bûne, ji destpêka şoreşa Sûriyê xwe dûr girtine û beşdarî şoreşê nebûne. Tevî ku daxuyaniya dawiyê ya kongreyê dibêje ku ew beşek in ji şoreşa Sûriyê, lê ew di praktîkê de ne beşekê şoreşê ne."

Lê Fuad Elîko van axaftinan red dike û dakokiyê li ser wê yekê dike ku ew alîgirên guhertinên bingehîn in li Sûriyê: "Rûxandina rejîmê hevokeke girseyî ye, lê guhertina bingehîna rejîmê hevokeke siyasî ye û çendin armanc û rehendên xwe hene. Loma me di kongreyê de biryara guhertina bingehîn a rejîmê da." Elîko derbarê mesela gotûbêjên ligel rijêma Sûriya dibêje: "Ev cara pêşîn e ku partiyên kurdî yek biryara wan çêdibe, em bêyî opozisyona Sûrî gotûbêjan ligel rejîma Sûriyê encam nadin. Eniyên opozisyona Sûriyê hene ku yek jê Ragihandina Dîmeşqê û yan din jî Civata Hemahengiya Nîştîmanî ye, em ê ligel herduyan gotûbêjan bikin û di vê derbarê de biryar bidin."

### Erdheja Wanê siyaset nerm kir

## Çandar: Siyasetvan neçar in ji vê bûyerê fêrî dersekê bibin

**Hêmin Xoşnaw**

Bi baweriya gelek nivîskar û çavdêrên siyasî li Tirkiyeyê erdheja roja 23ê Cotmehê ku bajarê Wanê hejand, peyameke xwedayî ye bo çareserkirina pirsgirêka kurd û bi baweriya wan dibe rawestgeha peyrewkirina siyaseteke nû derbarê vê pirsgirêkê de.

Nivîskarê navdar Cengîz Çandar, du rojan piştî erdhejê gotarek nivîsand û ew erdhej weke, “peyameke xwedayî bo çareserkirina pirsgirêka kurd” wesif kir. Çandar dibêje “ew derza di encama kuştina lawên me de li bajarên Çelê, Colemêrg, Bedlîs û Norşîn ket wijdana me hê tije nebûye, lê erdheja Wanê bi kûrî em hemû hejandin.”

Çandar di gotara xwe de tîne bîra mirov ku berî erdhejê bi çend saetan artêşa Tirk ragehand ku li sînorê Colemêrgê “49 terorîst” kuştine. Ev jî tîne bîra mirov ku “ji sedî 30-35ê xelkê Wanê, di bingeh de xelkê Colemêrgê ne, ji ber nebûna aramiyê ji navçeyên xwe bar kirine.

Di dawiya nivîsa xwe de Çandar dibêje: “Ji xênî ku erdhej ruhê mirov birîndar dike, pêwîst e ji mantiqa mirov re jî bibe dersek mezin. Siyasetvan neçar in dersekê ji vê bûyerê fêr bibin. Lewma em dipirsin gelo erdheja Wanê bo çareseriyê peyameke xwedayî ye?”

#### Erdhej dibe faktorek bo aşîtî û çareseriyê

Hevserokê BDPê Selahattîn Demîrtaş, gava hemû alîkariya mirovî dibîne ku ji xelkê Wanê re tên şandin, dibêje: “Dirêjkirina destê alîkariyê bo lêqewimiyên erdhejê bihna biratiyê jê tê.” Navbirî ku ligel berpirsên BDPê serdana cihê bûyerê kirin, ji ajansa DIHA re dibêje: “Alîkarî ji herçar aliyên Tirkiyeyê tê, bihna biratiyê jê tê. Bira piştgiriya bira dike. Em spasiya hemû aliyan dikin.”

BDPê ku bi niyet bû pêşniyar bike wezîrê navxwe yê Tirkiyeyê bo parlamen bê vexwendin, ji pêşniyara xwe poşman bû.

Serokê parlamenê Tirkiyê Cemîl Çîçek helwesta BDPê vekişandina pêşniyara xwe weke tiştekî “baş” wesif kir: “Helwesteke baş e û di dema xwe de ye û hestiyarî pêve diyar e.”

Rojnameger Rûşen Çakir, vekişandina pêşniyara BDPê weke helwesteke berpirs wesif dike û ji Rûdawê re dibêje: “Helwest û piştgiriya birayên lêqewimî yên Wanê derfeteke bo xurtkirina biratiyê li Tirkiyeyê.” Li gor Çakir, bi hawarçûna qurbaniyên erdheja Wanê, mezintirîn bi hawarçûna sivîl e di dîroka Tirkiyeyê de “lewma geşbîn im ku ev hawarçûn destpêka gavên mezintir e.”

Mumtazer Torkune, rexneyan li helwesta wan nijadperestan digire û wan weke kesên “xwediyê psîkolojiya nexweş” wesif dike û ji Rûdawê re dibêje: “Kesên wisa ne ku pêdiviya wan bi dermankirinê heye, lê medyaya civakî ew paşguhxistine, Tirkiyeyê weke pirsgirêka kurdtirk li vê meseleyê temaşe nekir. Ev erdhej, mînaka herî ciwan e ku tabloya rastî ya hevahengiya me nîşan dide.”



## Kesên ku cenazeyên gerîllayan dîtine, dibêjin:

# Artêşa tirk çekên kîmyewî bi kar tîne



Pezê ku piştî êrîşek leşkerên tirk li gundekî Qendîlê tilifîn. Di vir de jî çekên kimyewî hatin bikaranîn?

**Bawer Çem** Amed

Hate îdiakirin ku artêşa tirk li Çelêya Colemêrgê li hemberî gerîllayên PKKê çekên kîmyewî bi kar aniye û 35 gerîlla ji ber êrîşa kîmyewî jiyana xwe ji dest dane. Malbat û nûnerên kurdan yên ku cenaze dîtine, gotin ku di cenazeyan de cihê guleyan tune bûye û hemû nîşane gumana bikaranîna çekên kîmyewî zêdetir dikin.

Piştî ku gerîllayên PKKê li Çelê bi êrîşeke 8 qolî avêtin ser baregehên leşkerî û bi dehan leşkerên tirk kuştin, artêşa tirk li hemberî gerîllayên PKKê hem bi rêya hewayî hem jî bi rêya bejayî topbaraneke dijwar pêk anî. Di encama vê topbaranê de hate eşkerakirin ku 35 gerîllayan jiyana xwe ji dest dane û cenazeyên 24 gerîllayan li morga Nexweşxaneya Dewletê ya Meletiyê tên girtin. Malbatên gerîllayan ku çûn Meletiyê û li cenazeyên zarokên xwe dîtin, destnîşan kirin ku di laşê zarokên wan de cihê guleyan tune bûye û zarokên wan bi çekên kîmyewî hatine kuştin. Li ser vê yekê şandeyeke ku ji BDPyiyan pêk dihat û Parlementerê BDPê yê Bedlîsê Husametîn Zenderlîoglu jî tê de bû, berê xwe dan Meletiyê û îdia malbatan lêkolîn kirin.

Parlementerê BDPê Zenderlîoglu derbarê çûna xwe ya Meletiyê û dîmenên ku dîtine de agahî dan Rûdawê. Zenderlîoglu diyar kir ku cenaze nîşanê wî nedane lê wêneyên cenazeyan ku ji her aliyî ve hatine kişandin bi rêya komputerê nîşanê wî dane. Zenderlîoglu



**Zenderlîoglu: Di wan wêneyan de jî dihate dîtin ku cihê guleyan tune bû.**

da zanîn ku di wan wêneyan de jî dihate dîtin ku cihê guleyan tune bû û wiha got: "Cenaze nedihatin naskirin. Hinek ji wan ser, hinek ji wan guh, poz, çav, pî, milê wan tune bû. Di nava wan de yek hebû, gewde qet tune bû. Tenê du ling hebûn. Dîmenên hovîtiyê bûn. Ti gotin têrî ravekirina vê hovîtiyê nake. Di laşê wan de cihê guleyan tune bû. Ez ne pispor û endezyarê kîmyayê me lê li ser laş leke hebûn. Di nava qebîleyên li Afrîkayê de jî dema şer tê kirin, ev hovîtî nayê kirin." Zenderlîoglu banga rawestandina "hovîtiyê" li dewleta tirk kir û eşkera kir ku ji bo lêkolînkirina îdiayên çekên kîmyewî ew ê şandeyeke pisporan amade bikin û vê bûyerê lêkolîn bikin. Zenderlîoglu qanûnên navneteweyî bi bîr xist û xwest Tirkiye li gorî qanûnên navneteweyî tevbigere. Li gorî qanûnên navnetewî bikaranîna çekên kîmyewî weke "sûcekî mirovahiyê" tê binavkirin û kîjan welat vî sûcî bike, wê rastê cezakirina navneteweyî bê. Sekreterê Şaxa Komeleya

### Peymana Çekên Kîmyewî

Çekên kîmyewî wek çekên tunekirina girseya gel, ya ajelan û ya zevî û daristanan tên bikaranîn. Cara yekem di Şerê Cîhanê yê Duyemîn de ji aliyê Artêşa Alman ve li dijî hêzên Fransiz û Belçîkî hatibû bikaranîn. Paşê li çendîn welatên Afrîkî û li Helebcê li dijî gelê kurd hat bikaranîn. Tirkiye yek ji wan welatan e ku bikaranîn û belavkirina çekên kimyevî li gor peymanên navnetewî qedexe kiriye û vê peymanê dişopîne.

Peymana Çekên Kîmyewî di sala 1993ê de ji bo îmzekirina dewletan hatiye vekirin û di sala 1997ê de jî di nava welatên îmzekirî de ev peyman hatiye bicîhkirin. Tirkiye di 12ê Gulana 1997ê de wek alîgirekî vê peymanê helwesta xwe nîşan daye, lê biryara pêkanîna peymanê piştî deh salan di 13ê Kanûna 2006ê de li parlemenê hatiye pejirandin. Peymana navborî bikaranîna çekên kîmyewî, behemanîn, pêşxistin û stokkirina wan qedexe dike. Li gor vê peymanê ji aliyê Rêxistina Qedexekirina Çekên Kîmyewî li Tirkiyeyê 6 kontrolên lêkolînê hatine kirin û di endamek erênî derketiye holê. Heta niha 178 welat vê peymanê îmzekirine. Netewên Yekbûyî di sala 1993yê de Peymana Kêmkirina Çekên Kîmyewî bo îmzekirina welatan vekir û 181 dewlet ev peyman îmze kirin. Tirkiyeyê herwiha di sala 1974ê de ligel 170 welatên din jî Peymana Çekên Biyolojîk îmze kiriye.

Heta niha hem Komeleya Mafê Mirovan, hem jî malbatên gerîllayan bi hinceta ku Tirkiyeyê ev cek li dijî gerîllayên PKKê bikaraniye çendîn caran li himberê Tirkiyeyê li Dadgeha Mafê Mirovan ya Ewropayê doz vekirine.

# Lorîn bo Ebruyê

**Medya Deniz**

***Dayîka Ebru Muhikanci, Birgul Muhikanci hefta borî çû Meletiyê û cenazeyê keça xwe dît û serpêhatiya xwe bi Rûdawê re parve kir:*** Ez ji te re qala çi bikim keça min? Ez ji te re behsa wan şevan bikim ku ser derdiketin û min bê xew heta sibê ji bo te dua dikirin? Yan behsa wê dilê xwe bikim ku piştî her guleyekî birîndar dibû? An jî behsa wan pirsiyaran bikim ku min her dem ji xwe dipirsî ka gelo niha ew dijî, an birçî ye, an pê sar e? Yan jî bi rojan li bendê dimam ku agahiyek jê bigirim...

Ji roja ku Ebru çû min ew xwarinên ku wê jê hez dikirin, ji xwe re qedexe kirin. Min ew xwarin careke din nepijandin, ji ber ku ez difikirîm ku canê wê wan xwarinan dixwaze...

Ji roja ku Ebru çû min cilekî nû li xwe nekir, min porê xwe hene nekir û min ti cejnekî pîroz nekir...

Ji roja ku Ebru çû min hemû nûçeyan şopandin; ez bi dayîkên hemû gerîlla û leşkerên kuştî re rûniştim û giriyam.

Çavê min her tim li derî bû, an wê nameyek bê, an wê telefonek bê, an wê kesekî ji dûr ve bê û silavên wê bîne...

Em çawa ketin rê ez nizanim, rêyek bê dawî bû û di rê de ez hertim bi xwe re diaxivîm û min digot: Dibe ku keça min di nava wan de nebe, dibe ku hebe jî. sonda min hebû, min digot ez ê li ber dijmin ti carî negirîm! Lê min nizanîbû ka wê dilê min guhdariya min bike. Ji kû derê xwe birîndar bûbû, gelo jiber ku derman nekirin lewma şehîd ket? Bi tenê bû? Westiya bû?

Ez li bavê Ebruyê mêzedikim, stûyê wî xar bûye, ser milên wî daketine jêr, ji nîşkave kal bûye. Devê xwe venake, êşa xwe di dilê xwe de vedişêre. Ji min re wisa tê ku eger em biaxivin, weke em şehadeta keça xwe qebûl dikin.

Sibê zû em li ber deriyê morgê ne... Ez nikarim xwe bigirim û ji niha ve digirîm. Bila Xwedê ti kesî nebe ber deriyê morgan keça min! Bila Xwedê ti kesê nebe ser canezeyek ku binêre zaroka wî ye yan na, bila Xwedê vê êşê nede ti kesî!

Em li nava morgê ne. Oy ez bimrim, ez ji te re çawa bêjim keça min! Ciwanan rêz kirine, bê can wan li wir dirêj kirine. Her yek ji wan roniya çavê dayîkekî ye.

Nayên naskirinê, nayên kifskirinê; hatine şewitandin, bûne komir, di bixwazî destê xwe bidî wanew der di nava destê te de dimîne. Min xwest ez wan miz bidim, lê kîjan? Çavên wan tune ne, ew min nabînin. Destên wan şewitî, serên wan pelizandî... Ev zarokên min in, ez bimrim! Li newala kîjan çiya wan kuştin û ji kengê ve wan li vir rêzkirine? Ez digrîm ji bo laşên perçekirî, ji bo pêşerojên bixwîn û ji bo ciwanên ku ji bo hêviyekê şer kirine û bûne komir.

Ez li keça xwe mêze dikim; keça min a gulbîn, min nekarî wê himbêz bikim, destê xwe bidim laşê wê yî şewitandî. Min xwest pê re biaxivim, lê ew gotin di qirika min de bû weke kulmê û derneket...

Ez dayîkek xezalê me ku têjika xwe li serê çiya winda kiriye. Ez ew dayîk im ku hesreta keniya keça xwe dikişand, lê rastî laşê wê ya şewitandî hat. Ez birîndar im, wê heta ez hebim ev birîn di dilê min de bimîne. Ez ew dayîk im ku heta dawiya emrê xwe wê bilorîne û wê bigrî...

Oy ez bimrim, rûyê wê hatibû perçekirin, min nedikarî wê nas bikim, ling û destên wê nemabûn. Min destê xwe dida kû derê di destê min de dima, şewitîbû, xwîna ziwa di nava porê wê de mabû. Ez niha vê wêneyê te yê li derveyî mirovahiyê, daleqînim ku derê? Bikim diyarî û bidim kê?



Wêne: DIHA



**Racî Bîlîcî: Eger çekên kîmyewî bi kar neanîne, divê destûr bidin ku ev otopsî ji aliyê saziyên serbixwe ve bên kirin.**

Mafên Mirovan (ÎHD) a Amedê Racî Bîlîcî jî di axaftina xwe ya ji Rûdawê re da zanîn ku gumana bikaranîna çekên kîmyewî hem di nava malbatan de û hem bi wan re çêbûye û xwest ku otopsiya cenazeyan ji aliyê saziyeke tipa edlî ya serbixwe ve bê kirin. Bîlîcî pêşniyara xwe wiha formule kir: "Malbat dibêjin çekên kîmyewî hatine bikaranîn. Serdozgeriya Komarê ya Meletiyê encamên otopsiyê nîşanî me nedan û nehiştin em cenazeyan jî bibînin. Hevalên me yên parêzer du caran li ser hev çûn. Ji Baroya Amedê û MazlumDerê û ÎHDê jî parêzer çûn. Parêzerên me dixwazin ku otopsiyeke duyemîn bê kirin. Lê divê ev otopsî ne ji aliyê dewletê ve, divê ji aliyê saziyên tipa edlî ya serbixwe ve bên kirin. Di encama otopsiya saziyên serbixwe de, îdiaya bikaranîna çekên kîmyewî wê zelal bibe.

Bîlîcî ji bo otopsiyê Komeleya Pisporên Saziya Tipa Edlî, Beşa Fakûlteyan a Saziya Tipa Edlî û Yekîtiya Doktorên Tirkiyeyê pêşniyar kir û wiha dawî li axaftina xwe anî: "Ji bo ku ev her sê sazî otopsiyeke din çêbikin, em ê serî li dozgeriyê bidin. Eger dozger vê daxwaza me qebûl bike, wê wisa be. Lê ger dozger û dewlet vê daxwaza me qebûl neke, wê çaxê wê gumanên me yên derbarê îdiayên çekên kîmyewî de zêdetir bibe. Madem çekên kîmyewî bi kar neanîne, wê çaxê divê destûr bidin ku ev otopsî ji aliyê saziyên serbixwe ve bên kirin."

# Hiqûqnasên alman daxwaza girtina Erdogan dikin

**Koln (Rûdaw)-** Du roj beriya serdana Serokwezîrê Tirkiyeyê Recep Tayyip Erdogan a ji bo 50. salvegera hatina karkerên tirk bo Almanyayê, komeke huqûqnasên alman li bajarê Karlsruheyê li hemberê Erdogan gilîname dane Serdozgeriya Federal. Hiqûqnasên alman ên ku giliyê Serokwezîr Erdogan, wezîrên parastinê û serfermandarên tirk ên di van 10 salên dawiyê de kirin, li Berlînê civînek çapemeniyê li dar xistin. Hiqûqnasan da zanîn ku li hemberî Kurdan terora dewletê tê pêkanîn û xwestin gava rayedarên tirk hatin Almanyayê bêne girtin.



Serokwezîrê Tirkiyeyê Recep Tayyîp Erdogan

Li gor nûçeya ANFê parêzer Britta Eder û Serokê Komeleya Demokrasî û Hiqûqa Navnetewî (MAF-DAD) parêzer Heike Gesweid ên ku doz vekirin, li Berlînê daxuyaniyek dan çapemeniyê. Parêzer Britta Eder sûcdarên di dadgeha Nurnbergê de têne darizandin bi bîr xist û wiha got; "Belgeyên di destê me de nîşan didin ku dewleta tirk li hemberî Kurdan terora dewletê pêk aniye. Li Almanyayê zagona sucên navnetewî heye."

Eder destnîşan kir ku di nava gilînameyan wan de 24 cenazeyên gerîllayên PKKê yên ku li Meletiyê ne û ku tê gotin bi çekên kîmyewî hatine qetilkirin, tune ne û diyar kir ku ew ê vê bûyerê jî li gilînameyê zêde bikin. Ligel Serokwezîrê Tirk Recep Tayyîp Erdogan, Wezîrên Parastinê Îsmet Yilmaz, Sabahattin Çakmakoglû û Mehmet Vecdî Gonul; Serfermandar Hîlmî Ozkuk, Yaşar Buyukanit, Îlker Başbug, Işik Koşaner û Nejdet Ozel bi pêkanîna sucên şer têne sucdarkirin.

Di gilînameyê de hiqûqnasên ku îmzeya wan heye ev in: Komeleya Demokrasî û Hiqûqa Navnetewî (MAF-DAD), nivsîkar Doris Gercke, Prof. Norman Paech, Endamê Meclîsa Federal Harald Weinberg, ji Yekitiya Bijîşkên Navnetewî ya li Dijî Şerê Atomên (IPPNW) Dr. Gisela Penteker, ji Endamê Şaredariya Nurnberg Marion Padua û civaknas Martin Dolzer.

# Sicîla Tirkiyeyê û gumanên çekên kîmyewî

Hate îdiakirin ku serfermandarê artêşa tirk yê niha Orgeneral Necdet Ozel di **11**ê **Gulana 1998**ê de li gundê Bilikaya Silopiya Şirnexê li hemberî gerîllayên PKKê çekên kîmyewî bi kar aniye û di encamê de 20 gerîllayan jiyana xwe ji dest daye. Ji ber vê yekê Ozel di medyaya kurd de weke "Necdetê Kîmyewî" tê binavkirin. Li gorî îdiayên saziyên mafên mirovan, artêşa tirk ji **1994**ê heta **2011**ê 5 caran çekên kîmyewî û 2 caran jî çekên biyolojîk bi kar aniye. Di encamê de heta niha 437 gerîllayan jiyana xwe ji dest daye û 134 heywan jî mirar bûne. Bûyereke din a ku tê bawer kirin ku artêşa tirk çekên kîmyewî bi kar anî jî, bûyera Çiyayê Bêzar a Semsûrê bû. Di vê êrişa **17**'ê **Gulana 1994**ê de 22 xwendekarên dersxaneyê ku nû tevli gerîlla dibûn û 6 gerîllayên PKKê jiyana xwe ji dest dan.

Çend bûyerên din ku li gor saziyên mafên mirovan çekên kîmyewî li dijî gerîllayên PKKê hatine bi kar anîn:

***1994 -** Li gundê Dim a navçeya Payîzavaya Wanê: 42 gerîllayên PKKê hatin kuştin.*

***1995 -** Li navçeya Şîrwan û Geliyê Şêx Cima ya li Sêrtê: 80 gerîllayan jiyana xwe ji dest dan.*

***1996 -** Çiyayên gundê Sêderî ya Çiyayê Bagokê ku li Midyada Mêrdînê ye: 9 gerîllayan jiyana xwe ji dest da.*

***11ê Nîsana 1997 -** Li Çemîşgezeka Dêrsimê: 21 gerîllayên PKKê hatin kuştin.*

***1999 -** Li Mezra Newala Çargê ya gundê Tanzê ya li Sasona Batmanê: 15 gerîlla hatin kuştin.*

***7ê Cotmeha 1999 -** Li Geliyê Karoka ya gundê Arpêta Tetwana Bedlîsê: 34 gerîllayan jiyana xwe ji dest da û ev gerîla di gora komî de hatin veşartin.*

***2001 -** Li navçeya Yêdîsuya Çewlikê: 20 gerîllayan jiyana xwe ji dest da.*

***Tebaxa 2003 -** Li çoltera navçeya Qubînê ya Batmanê: 7 gerîllayên PKKê hatin kuştin.*

***6ê Gulana 2004 -** Li çoltera Çiyayê Çiravê ya di navbera gundên Ersî û Savûran a Dihêya Sêrtê de: 6 gerîllayan jiyana xwe ji dest da.*

***31ê Adara 2005 -** Li Çiyayê Cûdiyê: 5 gerîlla hatin kuştin.*

***23ê Sibata 2006 -** Li derdora gundên Bakwan û Guriza ya li Kerborana: 7 gerîllayan jiyana xwe ji dest da.*

***24ê Adara 2006 -** Li Şenyaylaya Mûşê: 14 gerîllayên HPGê hatin kuştin. Dema cenazeyên van gerîlayan hatin Amedê, gel rabû ser piyan û dest bi serhildanê kir. Ev serhildan li tevahiya bajarên Kurdistanê belav bû û bi qasî 2 heftiyan berdewam kir. Piştî ku leşker jî bi polîsan re daketin bajêr, ev serhildan hate astengkirin.*

Malbatên gerîllayên PKKê ji bo ku ev rastî derkeve holê, li Serdozgeriya Komarê ya Amedê serlêdana sûc pêk anîbûn û xwestibûn leşkerên berpirsyar bên cezakirin. Di salên borî de angaştên bikaranîna çekên kîmyewî li dijî gerîlayên PKK di medyaya Almanyayê de jî bi berfirehî cîh girtin.

## Nerîn



# Dîrok bû şahidê qetlîamek din

**Mahmut Kilinç**

Du sal berê bû, di rojên ku hêviya çareseriyê geş dibû de, rayedarên hikûmeta tirk derketin pêşberê rojnamegeran û ragehandin ku "pêvajoyekî nû" dest pê dike. Hêvî hê jî geş bû.

Lê pirr neçû, bi navê "operasyonên KCK" binçavkirinên girseyî dest pê kir. Di nav raya giştî de ewil şaşwaziyekê rû da, paşê dijberiyekê hêdî hêdî serî hilda, lê hikûmetê ji vê re jî çare dît, "pirsgirêka kurd tine bû, pirsgirêka hemwelatiyên kurd hebû."

Demek dirêj raya giştî bi şîrovekirina vê hevokê mijûl bû, baş nehatibû fam kirin, gelo pirsgirêka kurd û pirsgirêka hemwelatiyên kurd ji hev cûda bûn, çawa ji hev vediqetin?

Ji wê rojê vir de "pêvajoya nû" bênavber didome, hejmara kesên hatine binçavkirin û girtin ne diyar e. Hikûmet hejmarekê, Partiya Aştî û Demokrasiyê (BDP) jî yeke din radigihîne.

Doz li dadgehên taybetî hat vekirin, qaşo nêzikî sê salane ku darizandinê dest pê kiriye, lê her tişt wek roja ewil e. Carek din em pêhesiyan ku li Tirkiyeyê ji bo Kurdan hiqûq tune ye.

Paşê dest pê kirin ku KCKyê xwestiye "sîstema dewletekê" damezrîne!

Bi ya wana, çawa dibû ku dewletek di nav sînorên xwe de destûrê bide rêxistiniyek wisa?

Kes nizane, ew kaos wê heta kengî bidome? Rewşa girtiyan ya hiqûqî ne diyar e, wisa dixuye ku ew ne girtî e, dîl in di destê dewletê de.

Çend rojan beriya karesata erdheja Wanê, cigirê serowezîr têgehekî nû ji ber xwe çêkir: "têkoşîna entegre." Ewil kêm kes têgihiştin ku "têkoşîna entegre" tê çi wateyê? Jixwe du sal in qala arteşekî taybet dihate kirin, ragehandin ku bi hezaran kes di bin perwerdeyê de ne. Arteşa ku ji kesên bijare dihate damezrandin, wê li ser sînorê başûrê Kurdistanê bê bicihkirin û li dijî têkoşerên kurd bi kar bê.

Paşê hat fam kirin ku "têkoşîna entegre" tê wateya êrişên hovane li dijî welatparêzên kurd. Çend rojan berê jî carek din serokwezîr derket pêşberê medyayê, wek fermandarekî muzafer ferman da arteşa xwe û got: "Xwedê rêya we veke. Xwedê yar û hevalê we be." Lê wî arteşa xwe ji xêr û xêrata re bi rê nedikir, nedişand ku bila enqaza erdheja Wanê rakin, ji erdhejzede û birîndaran re alîkar be.

Li ser fermana serokwezîr, arteşê berê xwe da çiyayên Kurdistanê. Tank, top, zirpoş û amrazên mirovkuştinê di bin parastina firokeyên şer û helikopterên agirbarandinê de, bi hev re xwe ji qetlîamekê re amade dikirin. Fermandaran ji fermandarê xwe ferman stendibûn, heta ku têr xwîn nerijandana divê venegeriyana. Cigirê serokwezîr pesna helwesta fermandaran dida û digot, "binêrin ew ne di nav malbata xwe de, li serê çiyê xwarina xwe dixwin û heta ku bi ser nekevin wê venegerin." Helbet serketin xewn bû, lê qetlîam pîşe û sicîla wana ye. Bi agir û çekên qedexekirî 35 xortên kurd şewitandin. Dîrok bû şahidê qetlîamek din.



Hatina karkerên kurd wek "karkerên mêvan" bo Almanya vê hefteyê kete 50. saliya xwe

### 50 sal di ser Peymana Kar a di navbera Almanya û Tirkiyeyê de derbas bûn:

# Ji bo jiyaneke nû wek mêvan hatin, li vir man

**Reşad Ozkan** Munchen

Di 31ê Cotmeha 1961ê de di navbera Almanya û Tirkiyeyê de peymana "Anwerbeabkommen" ango bo hatina karkeran peyman tê îmzekirin û di heman salê de bi hezaran karker bi trênan ji Stenbolê berê xwe dan Munchenê; karkerên mêvan paşê li Munchenê bo karkirinê li fabrîkeyan dihatin belavkirin.

Heta dawiya salên 1950 li Almanyayê nêzikî 600 hezar karkerên biyanî hebûn. Ew hejmar bi îmzekirina "Peymana Karkerên Koçber /Anwerbeabkommen" bi dewletên wek Îtalya (1955), Yûnanistan (1960), Îspanya (1960), Portekîz (1964), Tinûs (1965), Marokko (1965), Yûgoslavya (1968) û hwd,. re her diçû zêdetir dibû. Di sala 1961ê de jî di navbera Almanya û Tirkiyeyê de li bajarê Bonnê peymana "Anwerbeabkommen" hat îmze kirin. Ew sal bi hezaran karkerên tirk û kurd hatin Almanyayê. Îro li gor buroya îstatîstîk ya Almanya hejmara biyaniyan bûye 6 milyon û 750 hezar. Li gor agahiyên hikûmeta alman jî hejmara Kurdên li Almanyayê dijîn nêzikî 800 hezar in.

Di nava wan karkerên ku di salên 1970ê de hatine Almanyayê 2 Kurdên ji Meletiyê jî hebûn: Derwêş Yeger (69) û Abuzer Karaca (68). Derwêş ji gundê Akçadaga ser bi Kurecikê ye; Abuzer jî ji gundê Gokagaça ser bi Argûvanê ye.

Derwêş di sala 1970ê de hatiye Almanyayê. Beriya ku ew were Almanya li bajarê Edenê di beşa tekstîlê de kardikir. Ew dibêje: "Min xwe li buroya Dîtina Kar û Karkeran tomar kiribû. Buro çûna min bo Almanya qebûlkir. Ez bi firokeyê peşî çûm Hollanda û di sala 1971ê de derbasî Almanya bûm." Derwêş li Hollanda û Almanya di fabrîkeyên wek Biledest, Krone, Borken û Eilenmarktê de karkir û di sala 1973yê de li bajarê Munchenê de dibe niştecîh. Ew heman salê de zarok û hevjîna xwe ji Kurdistanê tîne Munchenê. Niha 5 kur û keçek û 12 neviyên wî hene. Ew dibêje, "Hemû niha zevicîne û kar, mal û milkên wan hene. Dema temenê min bû 58 ez bûm teqawût. Îro jî jiyana min di navbera Meletî û Munchenê de derbas dibe."

> **Jiyana me di fabrîkeyan de, di çayxaneyan de û di *heimên penaberan* de derbas dibû. Ji ber em Kurd û Elewî bûn, têkiliya me bi Tirkan re pir kêm bû...**

### "Rewşa kar û fabrîkeyan bir zehmet bû"

Abuzer Karaca jî beriya were Almanyayê li Stenbolê di çayxanayekê de kardikir. Wî jî xwe di saziya Dîtina Kar û Karkeran de tomar kiribû. Ew dibêje "Destûra çûna min ya Almanyayê hatibû. Di serî de terkkirina welat ji bo min pir giran hat. Min got ez herim an jî nerim?" Demekê bê biryar dimîne, di dawiyê de biryarê bo hatina Almanya digire û di sala 1973yê de hatiye Almanyayê. "Ez hatim bajarê Munchenê. Min di serî de wekî hesinkarekî di Fîrmeya Rotlingenê de karkir. Kar û şertên wan pir zehmet bûn, min pir fabrîke guhertin. Di dawiyê de min li ba fabrîkeyên "Garîl", û "Best" de nêzikî 30 salan karkir." Ew jî di 58 saliya xwe de dibe teqawût.

Abuzer û Derweş di jiyana xwe yên li Munchenê de karê siyasî jî kirine. Abuzer dibêje ku di salên koçberiyê de rewşa jiyana wan pir dijwar bû û li ser wan zextên aborî û siyasî hebûn. Ew wiha axaftina xwe didomîne: "Tirkan em qebûl nedikirin. Jiber em bo Almanan "Gastarbeiter" (karkerê m1evan) bûn ti têkiliyên me bi xelkê alman re jî tune bû. Jiyana me di fabrîkeyan, di çayxaneyan û di malên penaberan di Heim`an de derbas dibû. Jiber em Kurd û Elewî bûn têkiliyên me bi Tirkan re pir kêm bûn. Me di navbera xwe de karên siyasî jî dikir. Ez ti cara jî bîr nakim, li bajarê Munchenê komeleyek me bi navê "Alevî Birligi" hebû û em piştî kar li wir kom dibûn."



Wêne: Rûdaw

Derwêş Yeger û Abuzer Karaca

### Sedemên koçberiya Kurdan

Gengeşiya li Tirkiyeyê ya 12ê Îlonê û şerê Îraqê bûn sedem ku hejmara karkerên koçber zêde bibe bo Almanya. Kesên ku rastî zextên siyasî dihatin û xelkê gundan yên ku ji ber şer bêkar û bêmal diman berê xwe didan Almanyayê û Rojavayê Ewropayê.

Ev 50 sal in ku Kurd li Almanyayê dijîn, lê ji aliyê dewleta alman ve fermî wek Kurd nayên naskirin, weke welatiyên Tirkiye, Îran, Îraq û Sûriyê tên naskirin.

Dema ku 50 sal berê Kurd ji bo kar hatin Almanyayê, dahatiyek ne zelal û hinek şaşmayîn li benda wan bûn û ev tişt hêjî berdewam dikin.

**Parêzerekî kurd li hemberê komele û mizgeftek tirk doz vekir**

# “Polîsê alman yên esiltirk bi tûndî êrîşê ciwanên me kirin“

“Me ji rêvebirê polîs xwest ku bila polîsên esiltirk neyên çalakiya me”

**Azad Dîcle** Hagen

Piştî çalakiya li Çelê ku tê de 24 leşkerên tirk hatibûn kuştin, li gelek bajarên Tirkiyeyê û li çendîn bajarên Ewropayê nijadperestên tirk êrîş birin ser komele û saziyên kurdan. Yek ji van komeleyan ku rastî êrîşa girseyî ya nijadperestan hat, komeleya bajarê Almanya Hagenê bû. Di vê avahiyê de ligel Komeleya Çandî ya Kurdan, mizgeft û buroya tîma sporê FC Kurdistan heye. Serokê Komeleya Çandî ya Kurdan li Hagenê Hecî Apo got ku 6 ciwanên kurd li himberê êrîşa 200 nijadperestên tirk komele parastine û li şûna ku polîs ciwanên kurd ji êrişkaran biparêzin, polîsan êriş biriye ser ciwanên kurd û got, “Di nava koma polîsan de yên ku bi tûndî êrîşê ciwanên me kirine, polîsên esiltirk in.“

Parêzerê komeleya navborî Bariş Yeşil jî daxuyand ku wî roja 24ê Cotmehê li hemberê mizgeft û komeleyek û du kesên sivîl yên tirk doz vekirine.

### “Polîsên esiltirk bi bombeyên gazê êrîş dike“

Serokê Komeleya Çandî ya Kurdan li Hagenê Hecî Apo derbarê êrîşa nijadperestan ya li Hagenê û bûyerên piştî vê êrîşê, daxûyanî dane Rûdawê. Hecî Apo bi bîr xist ku nijadperestên tirk di heman rojê de li Berlînê,



Koma nijadperestên tirk ligel hebûna polîs êrîş birin ser komele û mizgefta kurdan

Amsterdamê, Parîsê, Dortmundê û Hagenê êrîş birine ser komeleyên kurdan û got ev êrîş rasterast ji aliyê konsulxaneyan û komele û mizgeftên Fethullah Gulen ve tên organîzekirin. Wek ku Hecî Apo got, roja ku 200 nijadperest tevlî dar, kevir û alên tirk dora komeleyê digirin û dest bi keviravêtinê dikin, di komeleyê de tenê 6 ciwanên kurd hebûne û axaftina xwe wiha dom kir: “Ciwan li komeleyê bilardo dileyîstin û dema dengê sloganan dibihîsin, derdikevin derveyî komeleyê û dibînin ku girseyek nijadperestan dora komeleyê girtine û diqîrin ku ew ê avahiyê bi ser wan de xirab bikin. Ciwanên me bera wan didin û di navbera wan de gengeşî derdikeve. Polîsê ku girseya nijadperestan nabîne bi tûndî êrîş dibe ser wan 6 ciwanên kurd û 2 kesan ji wan birîndar dike, rapora doktoran jî bi me re heye.“ Hecî Apo ragehand ku ciwanan du polîs nas kirine û gotine ku ew esiltirk in û yên ku ew birîndar kirine ew herdu polîs in. Serokê komeleya Hagenê da zanîn ku wan li hemberê vê êrîşê roja 29ê Cotmehê bi tevlîbûna 2500 Kurdan meşek li dar xistine û beriya meşê ew wek şandekê çûne bi serokê polîsan û bi Şaredarê Hagenê re axivîne. Hecî Apo got, “Me di hevdîtinê de ji wan re ronî kir ku polîsên esiltirk bi hestekî dijmanane êrîş birine ser ciwanên kurd û ew naxwazin careke din ew polîs bo çalakiyên kurdan bên bicîhkirin. Wan jî gotin eger em hejmarên wan polîsan ya taybet zanibin, em dikarin ji wan re bêjin, ew ê lêkolînê bikin.“

### Rûpelên Hurriyetê bi alên tirk sor bûn

Hürriyet

Di van rojên dawî de ku êrîşên nijadperestên tirk bo ser komeleyên kurdan berfireh bûne, rojnameyên tirk yên ku li Ewropayê tên weşandin jî heta ji wan tê hêrsa li hemberî Kurdan mezin dikin û zimanekî tund bikar tînin. Rojnameya Hurriyetê jî di 25ê Cotmehê de cihekî fereh da meşên girseyî yên li bajarên Almanyayê li dijî PKKê. Di nûçeyên Hurriyetê de wêneyên ji bajarên cûda yên bi alên tirkî û sloganên li dijî PKKê yên tûnd balê dikişînin. Derbarê meşa li Hagenê jî di nûçeya Hurriyetê de tê gotin ku 700 tirk li meydana Friedrich-Ebert civiyan û piştî ku leşkerên Colemêrgê bibîr anîn di nava bajêr de meşiyan. Lê di nûçeyê de behsa êrîşa ser komeleya kurdan nayê kirin.

### Li hemberê komele, mizgeft û du kes doz vekirin

Parêzerê Komeleya Çandî ya Kurdan, Bariş Yeşil, bi sedema ku êrîşa li dijî komeleyê organîze kirine, li himberê komeleya tirkan bi navê “Bildungs- und Kulturverein e.V.“ û mizgefta ser bi DITIPê doz vekir. Bariş Yeşil got, “Ji wan kesên ku êrîş birine ser komeleyê, me du kes eşkere kirin û derbarê wan de jî doz vekir.“ Parêzer Yeşil gotinên serokê komeleyê yên derbarê polîsên esiltirk piştrast kir û got, “Me ji serokê polîsan yê Hagenê re ev pirsgirêk jî eşkere kir. Wî jî got ku polîs li gor yasayan tevdigerin, lê eger bikaribin wan polîsan diyar bikin wê karibin lêkolînê debarê wan de bikin. Bariş Yeşil got, “Eger nûnerên komeleyê ji min bixwazin ku li hemberê polîsên esiltirk dozê vekim, ez ê hefteya pêşiya me hewl bidim ku li Dadgeha Îdariya Hagenê dozê vekim.“



Parêzer Bariş Yeşil

## Diskispor ji deplasmanê 3 pûan anîn



*Tîma Şaredariya Mezin a Amedê, Buyukşehir Belediyespor (Diskispor) 4'mîn maça xwe ya deplasmanê bi serkeftin derbas kir û bi 3 pûanan vegeriya Amedê.*

*Diskispora ku di Lîga 3'mîn Grûba 1ê de dileyîze di vê sezonê de 9'mîn maça xwe roja 30yê Cotmehê li Behrareş, li navçeya Vakfikebirê ligel tîma Beşikduzuspor leyîst û 0-1 maçê bi dest xist. Tîma Zer û Sor ligel vê serkeftinê kete rêza 5'min û pûanên xwe kirin 17, lê hê maçek wê ya kêm heye û di navbera wê û tîma lîderê lîgê de 6 pûan hene.*

*Ligel hefta pêşiya me jiber Cejna Qurbanê li lîgên Tirkiyeyê maç nayên leyîstin, rêveberiya Diskispor destûr neda futbolvanan û ji bo amadekariyên maça bi Gumuşhanesporê re biryara berdewamiya antermanan girt.*

*Maça dahatî Dîskispor roja 13ê Mijdarê li Amedê bi Gumuşhanesporê re dileyîze. Teknik Direktorê Diskispor Nurettin Şiro ji Diyarbakirsoz re ragihand ku ew bi armanca serkeftinê leyîstine û wan kariye gelek pozisyonan bikin gol. Şiro got, "Ji bo ya girîng encama maçê bû, û me 3 pûanên xwe zêde kirin û têkoşîna me ya bo lîderiyê didome."*

### Li NRW yekem tîma zarokên kurd tê damezrandin

# FC Kurdistan berê xwe da zarokan

Du tîmên zarokan ên futbolê li bajarê Hagenê di bin banê FC Kurdistan de tên damezirandin: Jugend B û Jugend C.

**Azad Dîcle**



Temenê zarokan di navbera 11-13 salî de ye û antrenorekî wan ê taybet heye

Wêne: Rûdaw

Tîma kurdên rûniştevanên bajarê Almanya Hagenê, FC Kurdistan di nîva sezona 2011/2012 de dest avêt du projeyên nû. Li aliyekî FC Kurdistan II hat damezirandin, li aliyê din ve ji bo damezirandina du tîmên zarokan amadekariya dike. Yek ji rêvebirên FC Kurdistan Necatî Çelîk ji Rûdawê re ragehand ew bi 35 zarokan re mijûl in û da zanîn ku heta niha ti tîmeke kurd li eyaleta NRW jêrxaneya zarokan nedamezirandiye û got, "Em dibin yekem."

Tîmên kurdan yên amator yên li Almanyayê di nava çend salên dawî de berê xwe didin damezirandina tîmên jêrxane, yên zarokan. Li bajarê Hagenê ku hejmareke zêde ya Kurdên serhedî lê dijîn, piştî bicîhbûna di komeleyeke mezin de di hêla sporê de gavên balkêş tên avêtin. Rêvebirên FC Kurdistan Necatî Çelîk daxuyand ku wan di nava du mehên dawî de tîmeke din ku ji 15 kesan pêk tê bi navê FC Kurdistan II damezirandine û hemû formalîteyên fermî ji aliyê saziyên bajarê Hagenê ve hatine qebûlkirin û got, "Di nava vê tîma me ya nû de ji bilî Kurdan, çend Tirk û Arnawûd jî hene." Çelîk got wê di destpêka nîvê duyem yê sezonê de FC Kurdistan II di Krêislîga C de dest bi maçan bike, lê bê pûan. Çelîk got, "Di destpêka sezona 2012/2013ê de wê tîma me fermî dest bi sezonê bike."

### Jêrxaneya zarokan

Li gor agahiyên ku Necati Çelîk dane Rûdawê, ew di bin banê FC Kurdistan de amadekariya damezirandina du tîmên futbolê yê zarokên lawîn dikin. Çelîk da zanîn ku temenê van zarokan di navbera 11 û 13 salî de ye û ji bilî Kurdên bakur, sê zarok ji başûr, 2 Alman, 2 Îtalyan û yek jî Marokan e. Wek ku Necatî Çelîk ragihand dêbavên van hemû zarokân yan endamên Komeleya Çandî ya Kurdan li Hagenê ne, yan jî bavên wan leystikvanên FC Kurdistanê ne. Hefta borî roja 28ê mehê rêvebirên FC Kurdistan ji bo destûra damezirandina tîma zarokan serî li saziya sporê ya Hagenê dane. Çelîk derbarê amadekariyên damezirandina du tîmên zarokan wiha axivî: "Em du tîm ava dikin bi navê B Jugend û C Jugend. Niha 35 zarok amade ne. Em dawiya heftê wan jî bi xwe re dibin antrenmanê. Hemû tîmên alman yên vê herêmê ji zarokan tîmên jêrxane dadimezirînin û berpirsên tîmên mezin tên maçên zarokan bi baldarî temaşe dikin û ji nava wan zarokan hildibijêrin." Necatî Çelîk ragehand ku di eyaleta NRWê de heta niha ti tîmeke kurdan ya futbolê ji zarokan tîmeke jêrxane nedamezirandiye û got, "Em dibin yekem. Em ji bo vê yekê jî alîkariya malbatan û ya saziyan dixwazin. Bila haya wan ji me hebe."

Çelîk di dawiya axaftina xwe de derbarê hejmara hemû leystikvanên tîmên FC Kurdistanê got, "Em bi giştî 80 kes in. Niha me ji bo tîma zarokan daxwaz ji şaredariya hagenê kir ku saheyekî hêşîn bo me teran bikin.




Ji bo piştgiriyê û ragehandina tîmên zarokan FC Kurdistan di 18ê Kanûnê de li Hagenê şevekî çandî li dar dixe.

# Piştî 50 saliya xwe ferî kurdî bû

"Dema ez helbestan dinivîsim, hêmayên ku diafirînim, dibêjim bila weke bûkaniya keçikekê xweş bibe û herkes jê hez bike."


Wêne: Rûdaw

**Mêrsîn (Rûdaw) –** Helbestvanê 64 salî Îlhamî Ozer ku piştî 50 saliya xwe dest bi hînbûna kurdî kir, bi sê dîwanên xwe yên helbestê xwendevan û guhdaran sermest dike. Digel vê yekê jî ew xwe hêj weke "berşîrê kurdî" dibîne.

Helbestvan Îlhamî Ozer ku ji Amedê ye û hêj di zarokatiya xwe de li bajarên Tirkiyeyê bi cih bû, di 50 saliya xwe de dest bi hînbûna kurdî kir û 3 dîwanên bi kurdî nivîsand. Dîwaneke Ozer jî di rê de ye. Ozerê ku heta niha 6 dîwan jî bi tirkî nivîsandine, niha li Mêrsînê dijî. Ozerê nêçîrvanê hêmayên evînê û peyvên kurdî ji rojnameya me Rûdawê re axivî.

**Dikarî behsa hînbûna xwe ya zimanê kurdî bikî?**

Hemû zarokatî û ciwaniya min, kalbûna min li bajarên Tirkiyeyê derbas bûn. Erê, ez ji Amedê me, lê di malbata me de kurdî nedihate axaftin û min bi kurdî nedizanî. Berê li cihên ku ez dixebitîm, Kurd jî zêde tune bûn. Bi salan di İş Bankasi de xebitîm, bûm şefê kambiyoyê û li wir teqewît bûm. Piştî teqewîtbûnê, di sala 1993ê de, kelecana Kurd û Kurdayetiyê zêde dibû. Zilm û zordariya ku li gelê min dihate kirin û bişaftina zimanê kurdî bibûn kul û derd û mereq û ketibûn dilê min. Ez ewçax ketim nava partiya siyasî ya kurd û min dest bi siyasetê kir. Lê siyaset bêyî kurdî nedibû. Demek min dev ji her tiştî berda û min ferhengeke Torî sitand. Bi rojan li ser xebitîm. Min xaçepirsên Azadiya Welat çêdikir. Li wir her roj hînê peyvekê dibûm. Çiqas hîn bûm, tim bi kurdî axivîm. Di 14 salan de ez gihiştim vê merheleyê. Niha hemû jiyana min bi kurdî ye. Berê min yek peyvek bi kurdî nedizanî, lê niha heta pêwîst neke bi tirkî naaxivim.

**Piraniya pirtûkên te bi "Banû" diqede. "Arbanû", "Tavbanû" û "Avbanû"...**

Hêj ez hînê kurdî nebibûm, min tiştek nedizanî. Lê belê min piştre li ser pirtûka Ehmedê Xanî hinek lêkolîn kir. Di wir de sê melek hene, weke Heyvbanû, Tavbanû. Herwiha li cîhanê ji gelên zayîne heta îro însanên pêşeng gotine çar lingên cîhanê hene. Av, ax, ar, tav... Ez fikirîm, min got divê dema min pirtûk derxist, ez van herçar navan li pirtûkên xwe bikim. Barê zimanê me pir giran e, em dixwazin vî barî hinekî sivik bikin. Herkes du-sê peyvan îcad bike, ziman wê pir ji me hez bike.

**Di helbestên te de piranî evîn derdikeve pêş. Bandora evînê ya li ser helbestên te çi ye?**

Dema mirov li çolê dimînin, li avê digerin. Lê belê tîbûna çolê û rewşa avê çiqas ji hev veneqete, mirov jî nikarin ji evînê veqetin. Ez hatim vî temenî, min hêj tiştekî xweş nedîtiye. Di zikê min de, dil û hundirê min de, evîn kul û derdek e. Lewma ez li ser wê pir sekinîm. Lê min di pirtûkên xwe yên dawî de sîwanê helbestê ji şoreş û evînê ava kir. Berê min qala rondikan, evîn û xerîbiyê dikir. Lê di demên dawî de min berê xwe da şoreşê jî. Min pirtûkek xwe li ser keçikekê nivîsand. Min ji keçikê hez dikir lê haya wê ji vê hezkirina min tunebû. Min di keçikê de gencîneyeke mezin didît. Lê haya keçikê ji gencîneya xwe jî tunebû. Wê nedizanî di wê de petrolek, madenek heye. Lê min ew taybetî didîtin. Jixwe helbestvanî dîtin e.

**Tu niha xwe û zimanê kurdî çiqas nêzî hev dibînî?**

Ez bûm dilketiyê kurdîtiyê. Min hê jî tam mafê wê nedaye. Ez hê jî li ser peyvên pêşiyan û bêjeyên kurdî disekinim, dixwazim peyvên pir balkêş û resen peyda bikim û di helbesta xwe de bi kar bînim. Min meraqa xwe bir serî û min kurdiya xwe bi pêş xist. Jiyana min êdî bi kurdî diherike.

**Hêmayên te yên helbestê naşibin helbestvanên din. Tu van hêmayan çawa diafirînî?**

Dema ez helbestan dinivîsim, hêmayên ku diafirînim, dibêjim bila weke bûkaniya keçikekê xweş bibe û herkes jê hez bike. Çûk çawa her serê sibehê dikin "wîçawîç", ez jî bi vî awayî li hêmayan digerim, peyda dikim û di rêzên helbestê de bi cih dikim. Helbestvanekî fransî dibêje 'Hêma movika helbestê ye'. Movik tunebe însan jî tune ye. Hêma bi xwe xeyal in. Xeyal jî divê pir rengîn bin. Hêma pitikên biçûk in, pitikên te ne. Naşibin ti kesî. Di dinyayê de şeş milyar însan hene, yek naşibe yekî.



"Ez bûm dilketiyê kurdîtiyê. Ez hê jî li ser peyvên pêyiyan û bêjeyên kurdî disekinim..."

# Li Berlînê piştî sê salan careke din festîvala fîlmên kurdî

Ciwan Tengezar Berlîn

Li Berlînê di navbera 11 û 18ê Mijdarê de 6. Festîvala Fîlmên Kurdî li dar dikeve. Weke salên din îsal jî festîval di bin sîwana şaredarê Berlînê Klaus Wowereit de li dar dikeve.

Festîval bi rêveberiya Mehmet Aktaş û gelek hevkarên din ji sala 2002yê ve tê li dar xistin. Heta niha di festîvalan de zêdeyî 200 fîlmên kurt, fîlmên hunerî û belgeyî hatine ser perdeya spî. Cara dawî di 2008ê de, Pêncemîn Festîvala Fîlmên Kurdî li Berlînê bi fîlmê "Vinterland" a derhênerê kurd Hîşam Zaman ve hatibû li dar xistin.

Festîvala îsal di 11ê Mijdarê de di saet 20:00ê de festîval, bi fîlmê Atilla Cengiz "Ogul" (Law) li Cineplex Neukollnê vedibe. Di 18ê Mijdarê de jî di saet 20:00ê de li Stadthaus Bocklerparkê bi şahiya pîrozkirina festîvalê, bi hunermenda kurd Hanî, koma Fake-Gipsy, Latcho Nash Nash û bi mêvanên din yên surprîz, di dawiyê de bi DJ Bariş re bi dawî dibe. Di bernameya festîvalê de ji xeynî fîlman pêşangeha wêneyan û workshop jî hene.

Îsal festîvala fîlmên kurdî ne tenê li Berlînê, herwiha di navbera 12.12.2011 - 17.12.2011ê de li Duhokê jî li dar dikeve.

### Yavûz tevlî nabe

Derhênerê kurd Yuksel Yavuzê ku li Almanyayê dijî tevlî Festîvala Fîlmên Kurdî li Berlînê nabe. Yavuz ji Rûdawê re ragehand ku niha di destê wî de fîlmek nû tuneye û ew di dema festival Berlînê de diçe Batmanê û li wire wek jurî tevlî Festivala Fîlman ya Yilmaz Guney dibe.

### Navnîşana sînemayan

Fîlmên Festivalê li vir tên nîşandan:

**Cineplex Neukölln**
Karl-Marx-Str. 66
**Eiszeit Kino**
Zeughofstraße 20








## Murat Karayilan:

# Nabe ku êdî şerê naxweyi bê nîqaşkirin jî!

**Rûdaw: Êrîşa Çelê ji bo rawestandina operasyona bejayî ya artêşa tirk ya ser baregehên we yên li Başûrê Kurdistanê bû, yan jî ji bo nîşandana hêza we ya ji bo tolhildana Rûstem Cûdî û herdu fermandarên we yên din bû?**

**Murat Karayilan:** Bi esasî ev mijarên we di hundirê pirsê de anîn ziman, hemû jî têde hene. Bi giştî mirov dikare bêje ku çalakiya Çelê ji bo dewleta Tirkiyeyê peyamek bû. Peyama ku hûn nikarin bi şêwazê leşkerî encamê wergirin, divê hûn êrîşên xwe bisekinînin. Ango bi giştî tê wateya peyamek wisa.

A din jî, ne tenê çalakiyeke. Bi rastî niha di nav çapemeniya Tirkiyeyê de jî tê nîqaşkirin. Wekî operasyoneke şoreşgerî berfireh e. Li Hakkariyê, di navçeya Çelê de hemû cih û warên dewleta Tirkiyeyê hatine hedefkirin. Bi giştî li ser 19 noqteyan operasyon pêşketiye. Ew dibêjin 24 windahiyên wan hene. Ne rast e. Yên misoger bi çav hatine dîtin 81 in. Mimkun e hîn zêdetir be. Ev di heman demê de asta gerîllayên azadiya Kurdistanê jî raber dike, eşkere dike ku performansa xwe ya leşkerî di kîjan astê de ye û êrîşên dewleta Tirkiyeyê encamên xwe tune ye. Eger em bixwazin, em jî dikarin darbeyên mezin li wan bixin. Ev raber kir. Hem ji bo bîranîna şehîdan wekî bersivekê ye, hem jî peyamek e.

Yek jî, amadekariyên wan ên ji bo Başûr jî hebûn, ew jî sabote kir, li bin guhê hev xist. Ya din jî, tê zanîn ku Çelê navendeke leşkerî ya girîng e. Bi taybetî topxaneya li vê derê li hemû Behdînanê dixê. Piraniya herêma Behdînanê ji vê derê tê bombebaran kirin. Ji ber wê yekê, di heman demê de ji bo êrîşên wan ên li ser Başûr jî bersivek e.

**Piştî êrîşa Çelê, niha li Tirkiyeyê guftûgo li ser wê tê kirin ku ti bandora pêkanîna operasyoneke bejayî çênabe. Li gorî we, Tirkiye ber bi şer ve diçe, yan jî siyasetek nerm li hemberî BDPê dimeşîne û birêz Abdullah Ocalan ji Îmralî ji bo malek taybet tê veguhestin?**

Çalakiya Çelê tevaya Tirkiyeyê hejand û Tirkiye niha bi her şêwazî li ser gotûbêj dike. Rast e, piranî kes dibêjin pêwîst e em bi awayekî dijwar bersiv bidin û em êrîş bikin. Lê qismek jî dibêje, ev ne çare ye. 30 sal in em dixwazin vê pirsgirêkê bi çekan çareser bikin, lê vaye li Çelê raber bû ku operasyonan ti encam negirtiye. Divê em bi awayekî din li ser bifikirin. Hinek jî wisa dibêjin.

Ez niha naxwazim tiştekî bibêjim, eger ez bêjim wê zû be. Herdu îhtimal jî hene, lê belê ez dikarim vê bêjim: Eger berê wê di aliyê tundiyê de biçe, ber bi şer ve biçe, wê Tirkiye bi ser nekeve. Herî dawî rojekê ji bo pirsgirêkê wê bê ser çareseriya siyasî. Lê niha wê biryarê di kîjan alî de bidê, ez di wê derheqê de ji niha ve naxwazim tiştekî bînim ziman, ji ber ku wê zû be.

**Ji bo lêdana gerîllayên PKKê Tirkiye niha gelek daxwazan ji Herêma Kurdistanê dike ku pêşmerge alîkariya artêşa Tirkiyeyê bikin. Ev daxwaza Tirkiyeyê çawa ye û li gorî dîtina we gelo wê desthilatdarên Herêma Kurdistanê bi vê daxwaza Tirkiyeyê razî bibin?**

Ev mijar ji bo me Kurdan mijarek pir girîng û stratejîk e. Nabe ku bi hêsanî mirov li ser guftûgo bike. Divê êdî di nava me Kurdan de, di siyaseta Kurdistanî de nîqaşên wisa qet nebin. Ango divê tiştekî qet ne mimkun be. Ez bawer dikim ku wê wisa be. Ji ber wekî hûn jî dizanin, Serokê Herêma Kurdistanê Kak Mesûd Barzanî heta niha gelek caran di vê mijarê de axivî ye û soz daye ku wê careke din şerê navxweyî çênebe û wê rê nede vê yekê. Di heman demê de Mam Celal jî tiştên ku dihatin vê wateyê anîne ziman. Me bi xwe jî ev pir caran bi awayekî zelal aniye ziman ku êdî wê ti caran şerê navxweyî çênebe û me ev defter girtiye. Şer wê ti caran di navbera gerîlla û pêşmergeyan de çênebe. Ev hêz divê wekî hêzên parastina gelê kurd xwe bikin yek û ne li dijî hev bisekinin.

Eger tevlî van sozên hemû aliyan, ên ku me li pêşberî raya giştî bi eşkere dayî, cardin şerê navxweyî çêbibe, ne tenê wê doza kurd zirarê bibîne, gelê kurd wê demê winda bike û têk biçe. Di heman demê de ev li hemberî tevahiya cîhanê wê şermek mezin be. Ji bo wê, ez vê mijarê wisa girîng dibînim ku divê mirov nikaribe li ser nîqaş jî bike. Ez bawer dikim ku hemû siyasetmedarên kurd heman hestan parve dikin û wê ti aliyên kurd cardin tiştên wekî şerê navxweyî qet û qet nexin rojeva xwe.

Amerîka, niha ji Îraqê paşve dikişe û di herêmê de rolekê dide Tirkiyeyê. Hêzên li herêma Rojhilata Navîn li gorî hevsengiya nû xwe jinûve bicih dikin. Em Kurd ku niha em bêjin em pala xwe bidin Tirkiyeyê û wê berjewendiyên me wisa bên parastin, di vê rewşê de ez vê rast nabînim. Çima? Heta ku Tirkiye di nava xwe de nasnameya gelê Kurd nas neke û statuya gelê Kurd diyar nekê (otonomî û hwd.), dewleta Tirkiyeyê wê her tim li dijî Kurdistaneke serbixwe be, li dijî Kurdistaneke federal be, li dijî her Kurdekî/e xwedî statu û nasname be. Lê niha bi şêwazekî taktîkî dewleta tirk hinekê girîngiyê dide siyaseta Başûr û Herêma Kurdistanê. Ez vê fêm dikim. Lê ez dibêjim, eger em di hundirê Tirkiyeyê de nasnameya kurd bi dewleta Tirkiyeyê bidin qebûlkirin, wê demê dewleta Tirkiyeyê wê bikaribe bi Kurdên derveyî Tirkiyeyê re jî dostaniyê bikê. Heya ku di hundirê Tirkiyeyê de pirsgirêka kurd çareser nebe, ne mimkune dewleta Tirkiye ji bo Kurdên derveyî Tirkiyeyê dostaniyê bikê. Ji ber ku wiha dibêjin: Heta Federasyona Kurdistanê hebe, Kurdên di nav me de jî serê xwe natewînin.

Ez dibêjim, tenê şerê navxweyî nekirin, têrê nake. Jixwe ez bawer nakim ev bibe. Di vê derheqê de ez bi soz û axaftinên Kak Mesûd û Mam Celal bawer dikim. Nabê. Lê mijar tenê şer kirin an jî ne kirin nîne. Meseleyên din jî hene. Divê em di warê siyasî de hevdu destek bikin. Divê mirov di warê

> Em bi Tirkiyeyê re gihîştine astekê

> Em çiqas xurt bin, wê destê Başûrê Kurdistanê jî xurt bibe

> Em biryara ETAyê ya çekberdanê rast dibînin



Wêne: Rûdaw

## Eger Tirkiye êrîşê Sûriyê bike, wê PKK jî êrîşî Tirkiyeyê bike?

**Rûdaw: Hinek navendên tirkan dibejin, û heya bi baweriya hinek nivîskarên kurd jî, zêdebûna êrîşên li ser Tirkiyeyê ji bo berjewendiyên Sûriyê ne. Bi taybetî jî Mustafa Karasu ragehand ku eger Tirkiye êrîşê Sûriyê bike, wê PKK jî êrîşî Tirkiyeyê bike. Nêrîna we ya derbarê vê yekê û rûxandina rejîma Esad a li Sûriyê de çi ye?**

**Murat Karayilan:** Niha divê mirov bi propagandayên çapemeniya Tirkiyeyê pir zêde bawer nekê. Lê em dinêrin, hinek aliyên kurd, wekî we jî anî ziman, hinek nivîskarên kurd jî dikevin bin bandora propagandayên çapemeniya Tirkiyeyê. Çapemeniya Tirkiyeyê erka xwe dibîne ku li hemberî Kurdan tim şerê psîkolojîk bimeşînê.

Berî vê bi çar rojan serokwezîr cardek din bang li hemû kesên xwediyên rojname û TVyan û gerînendeyên (midur) wan kir û got: "Em niha li hemberî PKKê şer dikin, divê hûn jî, çawa ku girêdayî sporê dema tîmeke futbolê diçe derve, futbolê dileyîze û hûn bi ruhekî millî piştevaniya tîma millî dikin, divê hûn piştevaniya me bikin." Serokwezîr, wisa eşkere ji hemû çapemeniya Tirkiyeyê re axivî.

Di heqîqetê de li ser Sûriyê nêzîkbûna me ev e; êdî dema desthilatdariya yek partî bihûrî ye. Sîstema Baas ne sîstemek demokratîk e û nikarê dom bibê. Rejîma Sûriyê niha divê reformeke bingehîn bikê, derbasî demokrasiyê bibê û mafê gelê kurd bidê. Eger bi rastî reformeke demokratîk bikê, mafê gelê kurd bidê û civaka xwe razî bikê, mimkun e ku ev desthilat berdewam bibe. Lê wisa nekê, ev desthilat nikarê berdewam bibê.

Em dixwazin di Sûriyê de demokrasî çêbibê û bi perspektîfa xweseriya demokratîk pirsgirêka kurd çareser bibê. Em vê dixwazin. Kurd lazime li vir xwe şaş nekin, xwe nekin hedef. A herî girîng, derheqê Kurdan de ti projeya opozîsyonê jî ya berçav nîne. Opozîsyon jî hema hema wekî rejîmê li ser Kurdan difikirê. Ji bo vê yekê, bi raya me, lazime Kurd bikarin bi her du aliyan re jî bidin û bistînin, li hemberî şaşîtiyan têkoşîn bikin, azadî û demokrasiyê bixwazin, doza xwe bimeşînin. Bi vî awayî bikarin xwe bikin îrade û di jinûveavakirina Sûriyê de ew jî bigehin mafên xwe. Heqîqet ev e. Wisa ti piştevaniya me di bin her şert û mercî de nîne.

Ew axaftina hevalê Mustafa Karasu, ez dibêjim şaş hatiye fêmkirin. M. Karasu wisa negot. Ji bo Kurdan got ku eger êrîşî ser Kurdan bikê, wê Kurd li ber xwe bidin û emê jî piştevaniya Kurdan bikin. Wisa got. Ev ne ji bo Sûriyê, ji bo Kurdên li Sûriyê got, "eger Tirkiye êrîş bikê, emê piştevaniya Kurdan bikin".


Wêne: Rûdaw

siyasî de hêvî nede dagirkeriyê. Divê mirov îstixbaratê nedê. Divê mirov bi ti awayî piştevaniya dagirkeriyê nekê. Em piştevaniya xwe bi xwe bikin. Ji bo ew bibînin ku Kurd bûne yek, êdî Kurd îradeyek in, hevdu lawaz nakin.

**Serokwezîrê Îraqê Nûrî Malikî ragehand ku wê ji bo lêdana PKKê ya di nava axa Îraqê de rê bide Tirkiyeyê. Li aliyê din jî we êrîşên li dijî polîs û artêşa Tirkiyeyê zêde kirine. Gelo ev yekê helwesta Herêma Kurdistanê lawaz nekiriye?**

Di axaftin û nêzîkbûna serokwezîrê Îraqê Nûrî Malikî de hesabên hundirî û yên derve hene. Ango hem dixwaze li Bakur, hem jî li Başûr siyaseta kurd tengav bikê. Bêguman ne siyasetek durist e, ji bo wê yekê ew wê helwesta xwe pêşdixe. Lê ez dibêjim ku em wekî PKK çiqas di Bakur de xurt bin, wê ewqas destê Hikûmeta Herêmê jî xurt bibe. Ez ne ligel im ku zêdebûna çalakiyên me yên li hemberî dewleta Tirkiyeyê destê Herêma Kurdistanê lawaz bikê. Na. Em çiqas xurt bin, wê destê Başûrê Kurdistanê jî xurt bibe. Di demên borî de jî tiştên qewimî ev yek îspat kiriye.

**Her wekî di peyama şermezarkirinê ya birêz Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî ya li hemberî êrîşa Çelê derdikeve holê, hewldanek hebû ji bo aramkirina rewşê, destpêkirina guftûgoyên veşartî, eşkerekirina navbera we û Tirkiyeyê de. Ew hewldan çi bûn?**

Ez niha dizanim ku hewldanên Serokê Herêma Kurdistanê birêz Mesûd Barzanî yên çareseriyê hene. Ji bo pirsgirêk bi rê û rêbazên siyasî bê çareserkirin, hewldanan pêşdixe. Em wate didin van hewldanan û em jî bi esasî dixwazin ev pirsgirêk bi rê û rêbazên siyasî û diyalogê çareser bibe. Ji bo wê yekê 18 sal in hewldanên serokatiya me, hewldanên rêveberiya me hene. Di van 5 salên dawiyê de bi dewleta Tirkiyeyê re di vê çarçoveyê de têkiliyên me çêbûn. Du salên destpêkê bi rêya hinek dostan û van sê salên dawiyê jî, bi awayek yekser hevdîtinên me çêbûn. Hevalên me li Ewropayê bi heyeteke Tirkiyeyê re bi awayekî sîstematîk hevdîtin pêşxistin. Di heman demê de li Îmraliyê bi serokatiya me re hevdîtinên sîstematîk hebûn. Me dixwest em bi van hevdîtinan bi siyasî biçin çareseriyê.

Herî dawî Serokatiya me ji bo çareseriyê protokolek bi şêwazek gelek zelal nivîsand. Heyeta dewletê ev protokol gihand destê me, me jî di çend xalan de hinek rayên xwe li ser gotin û em tevlî bûn. Heyetê jî got ku emê vê bibin, bixin rojeva serokwezîr, bixin rojeva dewletê. Piştî wê serokwezîr bersiv neda, zimanê xwe tûj kir. Her ku çû pêvajo xerab bû. Jixwe êdî heyet jî nehat hevdîtinan.

**Amerîka soza alîkariyek zêdetir daye Tirkiyeyê, lê şîrovekarên tirk dibêjin baweriya me bi Amerîkayê nayê, ji ber ku Amerîkayê di çend salên borî de bi çek û perwerdekirinê alîkarî daye PKKê. Gelo çi peyama we ji bo Amerîkayê heye ku niha di destpêka vekişîna hêzên xwe ji Îraqê de ye?**

Ez nêzîkbûna Amerîkayê di derheqê pirsgirêka Kurd de ji dil nabînim. Di vê mijarê de ji bo çareseriya pirsgirêka kurd hewldanên Amerîka yê pir zêde nîne. Pir balkêş e ku li Başûrê Kurdistanê gelê kurd ji bo mudaxeleya Îraqê, ji bo serkeftina siyaseta Amerîkayê, rolek leyîst. Tevahiya Kurdan û me jî piştevanî kir. Ango em li ti beşê Kurdistanê li pêşiya siyaseta Amerîkayê nebûne asteng, lê tevlî wê jî, bo mînak Amerîka niha ji Îraqê vedikişê, lê pirsgirêka Kurd di hundirê Îraqê de jî bi temamî çareser nekir. Nimûne, pirsgirêka Kerkûkê wisa hişt. Di heman demê de ji bo meseleya kurd li beşên din, ti siyaseteke Amerîkayê ya berçav nîne. Ango projeyeke çareserkirina pirsgirêka kurd ligel Amerîkayê yan nîne, yan jî em nabînin. Halbûkî gelê Kurd di herêmê de mafên xwe yên xwezayî dixwaze. Amerîkayê heya niha hem di sala 1974ê de bû sedem ku şoreşa kurd têk biçe, hem jî di sala 1999ê de serokê me Serok APO girt û radestî Tirkiyeyê kir. Bi wî awayî li hemberî gelê kurd hinek kiryarên xwe yên nexweş hene. Lê tevlî vê jî, gelê kurd ti zirar nedaye Amerîkayê. Tevgera me, wekî PKK me heta niha ti zirar nedaye Amerîkayê. Em ji bo mafên xwe yên xwezayî têkoşînê dikin, lê Amerîka ji vê re dibêje "teror"!

Çend roj berê Wezîra Derve ya Amerîkayê Clinton di axaftineke xwe de dibêje ku "vaye artêşa Tirkiyeyê niha çûye Başûrê Kurdistanê, ji bo terorîstan taqîb bikê. Ev mafê Tirkiyeyê ye". Hîna Tirkiye nehatiye, erê dike ku Tirkiye hatiye Başûrê Kurdistanê. Belê ez jî dibêjim; Birêz Clinton, ji bo mafê xwe yê xwezayî, ji bo mafê perwerdeya bi zimanê dayîkê têkoşîn li kû derê teror e? Ev çawa teror e? Çima zilma ku dewleta Tirkiye li gelê me dike hûn nabînin? Di girtîgehên Tirkiyeyê de 6.000 însanên kurd hene. Ji vana 4.000 yên bê sûc û bê bela ne. Sûcê wan ew e ku tenê li nasnameya kurd xwedî derketine. Hûn li hemberî van hemûyan çavê xwe digirin û dibêjin ku "mafê Tirkiyeyê heye ku heta Başûr jî biçê, ev heq e." Ez vê siyaseta Amerîkayê rast nabînim.

**BDPê daxwaza rawestandina êrîşan ji we û Tirkiyeyê dike. Her wiha xwepêşandan û çalakiyên sivîl ên Kurdan li Bakurê Kurdistanê û Tirkiyeyê pir lawaz bûne. Hûn hest bi wê yekê nakin ku ev êrîşên we zirarê digihîne xebata sivîl a li Tirkiyeyê, rewşê vedigerîne bo salên 1980 û 1990an û ev yek zirarê digihîne we jî?**

Pêwîst e ez vê bêjim: eger îro li Kurdistanê şer geş bûye, an jî hinek çalakiyên me hene, sedema vê ya yekemîn girtina nûnerên siyaseta sivîl e. Dewleta Tirkiyeyê niha li Kurdistana Bakur bêyî biryar bigire û îlan bike, şert û mercên awarte dimeşîne. Ne salên 1980an, ne jî salên 1990an, bi vî awayî siyasetmedarên kurd nehatibûn girtin. Niha ji 4.000 zêdetir siyasetmedarên kurd di zîndanê de rehîn in. Bi kurtahî ez vê dibêjim: dewleta Tirkiyeyê niha li hemberî gelê kurd, li hemberî siyaseta kurd, li hemberî BDPê, li hemberî hemû saziyên demokratîk û li hemberî tevgera me çi tiştê ji desta tê, hemûyan dike. Mînak, Şirnex nêzîkî Başûrê Kurdistanê ye. Li Şirnexê ti kesê hatî hilbijartin nema ye, tenê Hasîp Kaplan maye. Jixwe wî jî di parlemenê de got, "ez tenê mam e". Ji ber ku du parlamenterên din di girtîgehê de ne. Hemû şaredar girtin û kirin girtîgehê. Eger siyaseta sivîl lawaz bûye, vê yekê lawaz kiriye. Lê ez vê jî bêjim; ez bawer nakim siyaseta kurd a sivîl-demokratîk lawaz bibe, çalakî cardin hene.

Şert û mercên niha ji yên 1990an xerabtir e. Kengî salên 90an bi copan li dayîkên 60 salî xistin, nexweş kirin û şandin nexweşxanê? Kengî di salên 1990an de ewqas zarokên kurd hatin şehîdkirin? Niha tên şehîdkirin. Lê belê wekî min got, li hêlekê dibêjin "pêşîvekirina demokratîk, em Kurdan nas dikin", li hêlekê TRT-6 vedike, li hêlekê jî Kurdan dikuje û Kurdan dixe girtîgehê. Hemûyan bi hev re dike. Mesele ev e. Ev hinek kesan şaş dike.

**ETAyê piştî 43 salan xebata çekdarî ya li herêma Baskê ya Spanyayê, dest ji çekan berda. Hûn wekî rêxistineke çekdarî, vê biryarê çawa dibînin?**

Em biryara ETAyê ya çekberdanê rast dibînin. Ji ber ku ji aliyê Hikûmeta Spanyayê di vê derheqê de nêzîkbûneke ji bo çareseriyê ya erênî heye. Ya din jî, li welatê ETAyê, li Baskê îro xweserî heye, otonom e. Wan ji bo serxwebûnê şer dikirin. Serxwebûnê, li gorî yasayên Spanya, bi siyasî jî dikarin biparêzin. Ji bo wê şer meşandin pir zêde cihê xwe tune ye. Ez dibînim, ETAyê tiştê herî rast kir. Çek berda, dikare xebatên xwe di Spanyaya xweser de, otonom de, bi siyasî bimeşîne. Derfeta vê heye. Lê heman tişt li Tirkiyeyê tune ye. Eger ew nêzîkbûn û li Tirkiyeyê jî Kurdistaneke xweser hebe, emê jî çek berdin. Ji bo wê jî ez nêzîkbûna ETAyê rast dibînim.

**Hûn di wê baweriyê de ne ku Îran li dijî PKKê alîkariya Tirkiyeyê bike, bi taybet piştî serdana Wezîrê Karên Derve yê Îranê ji bo Tirkiyeyê û soza alîkariya hevbeş a li dijî PJAK û PKKê?**

Berê bi Îranê û Sûriyê re li dijî me îtifaq çêkiribû. Îro ew îtifaqa wan hilweşiya, ji ber ku bi xwe li dijî Sûriyê helwest wergirt. Vê yekê ew îtifaq parçe kir. Ji ber wê ez bawer nakim cardin Tirkiye û Îran bi hev re li ser me an jî li ser PJAKê êrîşan bimeşînin.

Wekî hûn jî dizanin, di navbera Îran û PJAKê de agirbestek çêbû. Niha her du teref jî vê agirbestê dişopînin. Ev tiştekî baş e, ji bo me jî cihê kêfxweşiyê ye. Ez texmîn nakim ku Îran cardin bi Tirkiyeyê re li hemberî me tevbigere. Di vê mijarê de hewldanên Tirkan wê encam negire. Lê belê cardin siyaset e. Belkî di hinek tiştên îstixbaratê de bi hev re kar bikin, lê wekî karekî hevbeş em êrîşekê pir hêvî nakin.

**Hikûmeta Herêma Kurdistanê ji bo çareserkirina pirsgirêkên ser sînor ên navbera Herêma Kurdistanê û Îranê de li gel PJAK û Îranê danûstandin encam da û pirsgirêk çareser kir. Gelo niha ti hewldanek bi wî awayî li gel PKKê jî heye?**

Di bersiva pirsa we ya jor de min bersiv daye vê pirsê. Wekî me anî ziman, tabî hewldan heye ku bi giştî pirsgirêka kurd li herêma Rojhilata Navîn çareser bibe. Lê ji bo di navbera me û dewleta Tirkiyeyê de pêvajoyeke wekî pêvajoya di navbera PJAK û Îranê de çêbûyî bi rê bikeve, berî her tiştî divê dewleta Tirkiyeyê xwedî helwest be. Heya niha her ku me agirbest îlan kiriye, dewleta Tirkiyeyê ev neşopandiye. Lê binêrin, PJAKê agirbest îlan kir, Îranê jî operasyonên xwe sekinandin. Tirkiyeyê ti caran wisa nekiriye.

Yek jî, em bi Tirkiyeyê re gihîştine astekê. Me 5 salan guftûgo kiriye. Meseleya me û Tirkiyeyê êdî ne tenê agirbest e. Divê êdî pirsgirêk çareser bibe. Tirkiye divê êdî di vê mijarê de biryarê bigire. Eger biryarê bigire, temam e. Mijara di navbera me û Tirkiyeyê de hinek din kûr e.

## Di protokola Ocalan ji bo dewletê de çi hebû?

**Murat Karayilan:** Di protokolê de mafê perwerdeya bi zimanê dayîkê hebû, mafê naskirina nasnameya kurd di asta destûra bingehîn de hebû û mafê xwe bi xwe rêvebirinê – em dibêjin xweseriya demokratîk - hebû. Di heman demê de li pêşberî vê jî, têde şer bi dawî kirin hebû. Lihevhatineke civakî, hevdu efûkirin, girtîgeh vala kirin, ev hemû têde hebûn. Heyeta hevdîtinê pir li dijî derneket. Ji ber ku bi rastî eger yek bixwazê pirsgirêkê çareser bikê, ev pîvanên herî maqûl bûn. Di heman demê de hesasiyetên Tirkiyeyê jî dida berçav. Lê belê serokwezîr qebûl nekir. Eşkere bû ku di zîhniyetê AKPê de hîn jî şovenîzm heye, qebûlkirina îradebûna Kurd nîne. Ew dibêjin Kurd hene, em dost û birayên hev in, tiştên wisa dibêje, lê pratîk nîne, pir taktîk dike. Nimûne, li aliyekî em li hev rûdiniştin, hevdîtin hebûn, li aliyê din operasyon leşkerî dikirin û siyasetmedarên kurd hemû hatin girtin. Niha 4.000 siyasetmedarên Kurd ên ku qet destê xwe neavêtî çekê û xebatê veşartî nekirî ango însanên ku xebatên siyasî, yasayî li gorî destûra Tirkiyeyê meşandî niha avêtine zîndanê. Ev sê sal in heta îfadeyên wan jî nehatine girtin. Me digot: "Ev çi ye? Hûn bi me re rûdinin. Madem hûn dixwazin çareseriya siyasî pêşbixin, belê hûn çima nûnerên siyasî digirin?" Heyetê jî digot: "Em jî li dijî ne. Ev baskekî dîtire ku vî karî dike. Emê li ser rawestin û berdin." Vaye sê sal derbas bû, hîna rast derneketiye. Bernedan. Berovajî, her çû girtin zêde kirin.

**Eger ew nêzîkbûn û li Tirkiyeyê jî Kurdistaneke xweser hebe, emê jî çek berdin. Ji bo wê jî ez nêzîkbûna ETAyê rast dibînim.**

Wezîra Bazirganî û Hilberînê ya Îrlandaya Bakur Arlene Foster bo Rûdawê:

# Herêma Kurdistanê bo şîrketên îrlandî derfeteke zêrîn e



Wêne: Rûdaw

Wezîra Bazirganî û Hilberînê ya Îrlandaya Bakur Arlene Foster

**Bi baweriya min Kurdistan cihekî aram e û bi kêrî bazirganiyê tê.**

Hawar Ebdulrezaq

Wezîra Bazirganî û Hilberînê ya Îrlandaya Bakur Arlene Foster ragehand ku Herêma Kurdistanê bi taybetî di warên avakirin, çandinî, petrol û gazê de derfeteke zêrîn dide şîrketên wan û got "Îralandaya bakur dikare di van aliyan de alîkariya Herêma Kurdistanê bike."

Bi mebesta beşdarîkirina di 7'mîn pêşangeha navdewletî ya Hewlêrê de, roja 22ê Cotmehê, şandeke bazirganî ya Brîtanya û Îrlandaya bakur gihişte Herêma Kurdistanê.

Şanda Îrlandaya bakur ji aliyê wezîra bazirganî û hilberînê ya Îrlandaya bakur Arlene Foster dihat serpereştîkirin ku ser bi mezintirîn partiya di civata nûnerên Îrlandaya Bakur, Partiya Yekîtiya Demokrat DUP ye.

Derbarê armanca hatina şîrketên wan û beşdarîkirina wan di vê pêşangehê de, Foster got ku ew bi bangewaziya wezîrên bazirganî û şaredarî û tûrîzmê yên Herêma Kurdistanê hatiye gava di Hezîrana borî de serdana Îralandaya bakur kirin: "Me nêzîka 20 şîrketên Îrlandaya bakur ligel xwe anîne, bi mebesta beşdarîkirinê di 7'mîn pêşangeha navdewletî ya Hewlêrê de û xurtkirina pêwendiyên bazirganî yên herdu aliyan."

Foster derbarê nêrîna xwe bo Herêma Kurdistanê jî got: "Gava ji firokeyê daketim, min hest bi wê zêdebûna balkêş ya avahiyan kir, ev hertim peyameke erênî dide ku ev welat berbi geşbûnê diçe, herwiha ew hejmara zêde ya otêlên ku tên çêkirin, hertim nîşaneke ku ev welat çavlirê ye mêvan û tûrîstên zêde bîne vir. Ez di wê baweriyê de me Herêma Kurdistanê derfeteke zêrîn dide şîrketên Îrlandaya bakur ku di warê avakirinê de pispor in û bi qalîteyeke bilind kar dikin."

Îrlandaya Bakur ligel Îngiltere, Wales û Îskoçyayê qraliyeta hevgirtî ya Brîtanyayê pêk tînin.

Arlene Foster wiha axivî: "Ji ber em ji rewşa Kurdistanê fêm dikin, rabuhuriyeke me jî ya kêşedar hebû û Îrlandaya bakur li ser asta cîhanê wiha hatiye dîtin ku navçeyeke kêşe tê de hene, lê di rastiyê de rewş pir cihê ye. Bi baweriya min Kurdistan jî cihekî aram e û bi kêrî bazirganiyê tê, li vir jî heman pirsgirêk heye ku nêrîneke cîhanê ya şaş li himber Kurdistanê heye."

Foster wê yekê weke xaleke hevbeş di navbera Îrlandaya bakur û Herêma Kurdistanê de dibîne ku Îrlanda beşeke ji Brîtanyaya mezin û Herêma Kurdistanê jî beşek ji Îraqê ye, yanî herdu alî ne dewletên serbixwe ne û di çarçoveyeke diyarkirî de dikarin tevbigerin.

Ew dibêje weke çawa berê navçeyeke ne aram li Îrlandaya bakur hatiye temaşekirin, Herêma Kurdistanê jî li ser asta cîhanê, bi awayekî şaş tê dîtin: "Lewma guherandina vê dîtinê demê dixwaze û pêdiviya wê bi hewldanên zêde heye."

Foster derbarê warên ku şîrketên Îrlandaya bakur dikarin li Herêma Kurdistanê tê de kar bikin, got: "Em hest dikin ku di warên avakirin, çandinî, petrol û gazê de dibin alîkar bo Herêma Kurdistanê û di vê serdana me de jî çend şîrketên avakirinê ligel me ne. Îrlandaya bakur di warê avakirinê de li ser asta cîhanê naskirî ye û li gelek welatên cîhanê şîrketên Îrlandî yên avakirinê tên daxwazkirin."

Nûnerên şîrketên Brîtanya û Îrlandaya bakur dibêjin ku dixwazin wê derfeta geşbûna Herêma Kurdistanê bikar bînin û bo îsal jî tekeziyeke zêde li ser warên avakirin û xwendina bilind dikin daku bazirgan û xwendekarên Kurd bikişînin ba xwe.

Konsolê Brîtanya li Hewlêrê Chris Bowers di gotarekê de ku di henga pêşwaziya şanda bazirganiya Brîtanya û Îrlandaya bakur de pêşkêş kir, got: "Îsal nûnerên 87 şîrketên Brîtanî serdana Herêma Kurdistanê kirine, ev jî zêdetir e ji hejmara wan şîrketên ku par tevî pêşangeha navdewletî ya Çînê kirin ku 80 şîrket bûn. Ev îspat dike ku şîrketên Brîtanî ji Çînê zêdetir giringiyê didin Herêma Kurdistanê."

### "Bazareke germ bo Brîtaniyan"

Li gor raporteke heftiya borî ya rojnameya Financial Times a Brîtanî, desteya bazirganî û sermayeguzarî ya Brîtanî ku serpereştiya şandê dike, ji wê yekê dilgiran bûye ku şîrketên Brîtanî baştir xwe amade nekirine daku hilberînê di sektora petrolê ya Herêma Kurdistanê de bikar bînin, di demekê de şîrketên Almanya, Çîn û Fransa li pêşiya wan bûn di pîşesaziya xaz û petrolê de û berî 2 salan tenê yek şîrketa Brîtanî tevî pêşangeha navdewletî ya Hewlêrê bûbû.

Rêveberê pêwendiyan di navbera hikûmet û şîrketên Brîtanya de û endamê şanda Brîtanya bo Herêma Kurdistanê Alex Lambet dibêje: "Hikûmeta Brîtanyayê fêm kiriye ku Herêma Kurdistanê bazareke girîng e bo şîrketên Brîtanî. Îsal jî girîngiyeke zêde tê dayin bi warê xwendina bilind û hejmareke zêde ya nûnerên zanîngehên Brîtanyayê di wê şanê de bûn."

Par nêzîka 80 xwendekarên kurd di çarçoveya programa şiyansaziyê de li zanîngehên Brîtanyayê hatine wergirtin.

Nûnera Hikûmeta Herêma Kurdistanê li Londonê Beyan Samî Ebdulrehman, amaje dide ku ew ji salên 2005-2006an de hewldanan dikin bo nasandina Herêma Kurdistanê bi navendên bazirganî yên Brîtanya: "Heya niha jî hinek ji Brîtaniyan wisa dibînin Herêma Kurdistanê weke beşên din ên Iraqê ne aram e û şîdet lê heye. Bawer dikim em serkeftî bûn di hewldanên xwe de ku îsal me hejmareke zêde ya şîrketên Brîtanî anîn Hewlêrê."

### "Kurdistan, Îrlandayê bibîr tîne"

Amon Fitzpatrick, yek ji bazirganên Îrlandî ye û rêveberê şîrketa FM e ku bi dabînkirina kelûpel û amûrên pakkirina avê taybet e, got ku berî serdana Herêma Kurdistanê bike agahiyên wî kêm bûn: "Lê gava min niha dît, dizanim Kurdistan pir cuda ye, xelkê wê jî bi germî pêşwazî li me kirin, ev jî Îrlanda tîne bîra min ku em jî bi heman awayî ligel mêvanan tevdigerin."

Par nêzîka 50 şîrketên Brîtanî tevî pêşangeha navdewletî ya Hewlêrê bûn, ku zêdetir di ware gaz û petrolê de pispor bûn, niha jî çend şîrketên Brîtanî girêbestên berhemanîna petrolê ligel Hikûmeta Herêma Kurdistanê îmze kirin weke Heritage Oil, Afren û Sterling Energy.

Berpirsê ajansa hilberînê ya Îrlandaya bakur Alster Hamilton dibêje: "Brîtaniyan fahm kiriye ku Herêma Kurdistanê, herêmeke aram e li gor beşên din ên Îraqê. Herwiha hejmareke zêde ya Kurdan jî li Brîtanyayê dijîn lewma Kurd ne xerîb in li cem Brîtaniyan."

Newzad Mehmûd /
Soran Behaedîn

Çawa zîndan bûye para hinek mêrên ku bi tawana kuştina jinan hatine girtin, çendîn jinan jî dest avêtine xwîna mêran û ew jî bi tawana kuştina mêran li n zîndanên Herêma Kurdistanê de ne.

Li gor wan amarên ji zîndanên çaksaziyên Hewlêr û Silêmaniyê dane Rûdawê niha 21 jin (14 li Hewlêr û 7 li Silêmaniyê) ji ber kuştina mêran hatine girtin, lê ji wan tenê 8 jin (7 li Silêmaniyê û 1 li Hewlêr) tawan li ser wan îsbat bûye û hatine sizadayîn.

Şehên navê çêkirî yê jineke 34 salî ye, ew dayika sê zarokan e û wê bi demançê mêrê xwe kuştiye, wê ji zîndana Hewlêrê behsa serhatiya xwe bo kir û got zilamê wê pênc salan têkiliyeke evîndariyê ligel keçekê hebûn. Şehên razî dibe ku zilam wê keçikê ji xwe re bîne, bi mercê ku ligel wê baş be: "Lê ji ber wê jinê bêtirî sed car li min xistiye."



### Jinekê bapîrê xwe kuştiye

Şehên behsa kuştina mêrê xwe kir û got: "Êvara ku ew hat kuştin bela xwe dabû min û dest ji min bernedida. Wî her digot ez ê te bikujim. Paşî demança xwe derxist û barkir û bi destkê demançê li min xist, min jî destê wî girt û demançe zivirî aliyê wî û teqiya. Ji destê me herduya du gulle bi wî ketin û jiyana xwe ji dest da."

Li navçeya Haciyawa sala borî alîkarê doxtor hat kuştin û kesê jî fikir nedikir ku jinek yan keçek wê bi tohmeta kuştina wî bên girtin, lê polîsan piştî çend rojan dayik û keçek girtin û ew niha di Zîndana Girtin û Veguhestina Silêmaniyê Beşa Jinan de ne.

Berpirsa Beşa Jinan li Zîndana Girtin û Veguhestina Silêmaniyê, Şehla Hesen dibêje, "hejmara jinên ku bi tawana kuştinê tên girtin sal bi sal zêde dibe."

## Ji ber çi sedeman jin dibin "mêrkuj"?

# "Jinên mêrkuj" behsa serpêhatiyên xwe dikin

**Sekreterê Yekîtiya Mêran: Jinek derî li mêrê xwe girtiye û agir berdaye wî**

Niha li Beşa Jinan a Zîndana Çaksaziya Civakî ya Silêmaniyê 7 jin bi tawana kuştinê sizayê xwe derbas dikin ku yek ji wan jinan bapîrê xwe kuştiye.

Rêvebira Beşa Amaran li Rêveberiya Çaksaziya Civakî ya Jinan, Kuwêstan Ehmed behsa amarên xwe dike û dibêje: "7 jin di 10 mehên îsal de bi tawana kuştina mêran hatine girtin. Du ji wan tawanên wan li ser îsbat bûne û hatine sizadayîn. Yek jê di temenê sinêleyî de bapîrê xwe kuştiye, îsal temenê wê bûye 18 salî û anîne cem me." Wê herwiha derbarê amarên salên berê jî got "di sala 2009ê de 3 jin bi tawana kuştinê hatine sizadayîn, sala borî jî tenê du jin hebûn."

Lê Sekreterê Yekîtiya Mêrên Kurdistanê berevajî amarên Kuwêstanê behs dike ku dosyeyên mêrên ku gef lê tê kirin zêde bûne û dibêje, "Di 10 mehên îsal de 96 dosya ji me re hatine."

**Li Hewlêr û Silêmaniyê 21 jin ji ber kuştina mêran di zîndanê de ne.**

Sekreterê Yekîtiya Mêrên Kurdistanê ku bingeha wê li bajarê Silêmaniyê ye, Burhan Elî Ferec dibêje ji aliyê jinan tundûtîjiya zêdebûye: "Di nava wan 96 dosyayan de bêtirî 10 mêr ji aliyê jinên xwe bi laşê xwe hatine azardan. Zilamek heye ku jina wî bi şev derî li ser wî girtiye, neft bi malê de kiriye û agir berdayê. Niha laşê wî mêrê ji sedî 20 şewitiye."

Sekreterê Yekîtiya Mêran şêweyên din ên tundûtîjiya jinan himber mêran ronî dike: "Hin jinan destê xwe danîne ser zarok û malên mêrên xwe, mêr heye hatiye derxistin, heye jî ji aliyê kesûkarên jinê lê xistine. Ev hemû di dema ku tûndûtîjî himber wan tê kirin hawara xwe dighînin me."

### "Jin heye serê zilamê xwe jêkiriye"

Lêkolera Civakî li Rêveberiya Çaksaziya Jinan û Sinêlan li Hewlêr, Newşar Qasim dibêje tevî ku mêr bêtir kuştinê pêktînin, lê jinan jî corên tawanan encam dayîne: "Jin ji ber tiştên biçûk zilamên xwe nakujin. Jin li ser pirsgirêkên kûrtir ku encamên wê ne rojek û du roj in, mêrên xwe dikujin."

Mîna ku Newşar dibêje jinên ku zilamên xwe kuştine ti rêyên din li ber wan nebûne. Ew dibêje: "Ew gihane rewşa teqînê û kesûkarên wan girîngî nedane wan, loma wan hewla xwekuştinê dane. Heta hin kuştinên jinan hebûn gelekî metirsîdar bûn, bo mînak serê zilamê xwe jêkirine yan bi gulleyan li serî xistine."

Ligel hinek mêrên ku jinên xwe dikujin hênceta "xiyaneta hevjîniyê" tînin bo tawana xwe, lê Newşar behsa wê yekê dike ku jin jî bi heman şêwe rastî bersîvdayîn û tawankirinê tên: "Jinek dema bi çavê xwe mêrê xwe ligel jineke din dibîne, ew dikeve şokê. Ew jin dikare daxwaza berdanê bike, lê mimkûn e ji kesûkarên xwe piştrast nebe û mimkûn e wan daxwaz ji jinê kiribin ku bêdeng bimîne, loma ew zilamê xwe dikuje. Hin caran jî jinê mêrê xwe bi şêweyekê kuştiye ku polîsan jî hest pê nekirine, lê di dawiyê de her eşkere bûye."



# Dewleta tirk PKK kir hevalbendê Îranê

**Bayram Ayaz**

Bi qasî ku reng û şêweyê siyasetê li Rojhilata navîn wisa zû diguhere, dibe ku qet li devereke din li cîhanê ewqasî zû naguhere.

Beriya çar pênc mehan mirov wisa hêvî dikir ku wê li Tirkiyeyê û bakurê Kurdistanê siyaset nerm bibe û hêdî hêdî aktorên siyaseta sivîl kontrolê bidest bixin. Şer raweste, rê li ber çareseriyên aşitiyane vebe.

Lê mixabin wisa nebû. Cîhê nermayî dahola şer girt, dengê çekan, bombe û topbaranê serdest bû. Hêviya aşitiyê qels bû. Piraniya siyasetvanan dibêjin "hêvî nema"! Em vê nabêjin. Belê ew hêvî qels bûye, lê têkneçûye! Di şer û pevçûnên siyasî û netewî de, divê hêviya aştî û çareseriyê neyê berze kirin. Dawiya her şerekî lihevhatin e, wê dewlet û siyaseta kurd jî lihev werin. Zû an bi derengî ev jî wê pêk were. Tiştâ niha dibe, di lihevhatinê de kêmxistina doz û daxwazên Kurdan in. Ev jî planeka dewleta Tirk e. Dewleta tirk ji çareseriyeke adilane re ne amade ye. Bo çi van gotinan dinivîsim?

**Divê her Kurdistaniyek di navbera zilma dewleta tirk û berevaniya kurdan de sînorê heqaniyetê bikşîne.**

Hema bêje tevahiya siyasetvan û rayedarên tirkan, ji bo qewimandinên vê dawiyê yekalî PKKê sucdar dikin. Zimanê medyaya tirkî mirov şêt dike. Qaşo dewleta tirk li hemberê grubeke "terorist" yasayan û mafên hevwelatiyan diparêze! Eger we vê pejirand, qet pêwist nake, em li ser heq û neheqiyê, edaletê bipeyivin. Eger we bombe û topbarana dewletê, wek berevaniya yasayan binav kir û rewa dît, hûn êdî nikarin meyitên şewitî yên çekdarên PKKê tarif bikin û hestê kurdan têbigîhin! Ew meyitên şewitî, nîşan û sembola berevaniya xelkekî bindest in! Em bi siyaseta PKKê razî, ne razî, ev mijareke din e. Lê hewce ye her Kurdistaniyek welatparêz, her mirovekî xwedî vijdan, di navbera zilma dewleta tirk û berevaniya kurdan de sînorekî heqaniyetê bikşîne. Dema hûn vê bikin, hûn dikarin bi hêsanî bibînin ku berpirsiyarê vî şerî dewleta tirk e. Dewleta tirk hebûna miletê kurd û mafên wî yê herî kêmtirîn qebûl bike, şer bi dawî tê û PKK jî bî vî halê xwe namîne.

Baş e, dewlet, AKP û Erdogan çima vê nakin? Jiber ku ew hê jî ne amade ne, hebûna Kurdê Kurd, Kurdê Kurdistanî û welatê me Kurdistanê qebûl bikin. Ew hê jî li dû pişaftinê ne, li duyê "Kurdê Tirk" in, li duyê "Kurdê AKPyî" ne! Zehmetî di vê derê de ye.

Ev siyaset bû sedem ku dewleta tirk berê xwe bide siyaseta bombe û topbaraniyê. PKK jî hêviyên xwe ji hevdîtinan birî û berê xwe da Tehranê. Karta PJAKê "teslim" kir, bû hevalbendê Îranê. Li Qamişlo xwe ji hevkariya 11 partiyan dûrxist. Li Beyrûtê beşdarê xwepênişandina aligirên rejîma Beşar Esad bû. Jiber êrîşên PKKê, alozî di pêwendiyên Tirkiye û Herêma Kurdistanê de peyda bûn.

Ev hevbendî ji bo PKKê çareserî ye? Belkî demekî kurt. Baş e, ev rêyeke rast e? Na... Rêya rast kîjan e? Hevkarî û hevahengiya Kurd û Kurdistanîtî li hemû parçeyan û... Qedirgirtin û gohdana Serokatiya Kurdistanê. Di nivîsekî kurt de ewqasî...



# Erdhej û pozbilindî

**David Romano**

Gava bextreşiyeke xwezayî diqewime, em hemû siyaset û hevrikiyê datînin aliyekî û milên xwe ba didin daku alîkariya qurbaniyan bikin. Dîmenê trajedîk ên xelkê di bin xaniyên rûxiyayî de di dema erdhejê de û kesên belengaz di dema bablîsokê de, yan ew mirovên ku hêza lehiyê wan ligel xwe dibe, hemû jî hestên mirovî yên seretayî yên xelkê dilivînin. Her lewma pitştî erdheja wêranker ya sala 1999ê, Yûnanistanê yek ser hevkarî şandin Tirkiyeyê. Par jî gava ji ber belavbûna agir di nav daristanan de, navçeya bakurê Îsrailê rastî ziyaneke mezin hat, hikûmeta niha ya Tirkiyeyê hevkarî şandin ji Îsrailê re.

Dîmenên erdheja Wanê ku roja 23ê meha borî çêbû, weke her bextreşiyeke xwezayî ya din diltezên bûn. Texmînên seretayî digotin hejmara kuştiyan hezar kes e û karbidestan heya niha piştrast kirine ku 596 kes mirine. Me hemuyan ew mûcîze dît ku çawa di nava wan kavilan de, rizgarkerên qehreman ku ji seranserê Tirkiyeyê hatibûn karîbûn zarokekî û mamosteyekî dibistanê û çend kesên din ji bin avahiyên rûxiyayî rizgar bikin. Hezarên kesan li bajarokê Erdîş, bajarê Wanê û gundên derdorê xaniyên wan rûxiyan û derbider bûn û çavlirêya kon û tiştên din dikirin, di demekê de ev hevdem bû ligel daketina pileya germiyê di dema şevê de digihişte asta cemedê.

Di demeke kêm de, behs û galegala siyasî li ser vê meseleyê dest pê dike. Pirsgirêka herî mezin li ser wê yekê dibe ku ji ber çi Erdogan di destpêkê de alîkariya navdewletî red kir. Îsrail nêziktirîn welat e ji Tirkiyeyê ku xwediyê tîmên lêgerînê yên pir bihêz û tekmolojiya pêşkeftî ye bo dîtina kesên ku di bin xaniyên rûxiyayî de asê dimînin. Di dema erdheja Îzmît a Tirkiyeyê di sala 1999ê de, tîmên Îsrailî yekemîn tîmên xizmetguzariyê bûn ku karîbûn gelek kesan ji bin xaniyên hilweşiyayî rizgar bikin.

Gava erdheja vê carê jî çêbû, serokwezîrê Îsrailê Benjamin Netanyahu di cih de telefona Erdogan kir û pêşniyara şandina grubên lêgerînê kir. Erdogan ligel nîşandana sipasiyê bo vê pêşniyarê, lê di cih de red kir. Ji dêvla sûdwergirtin ji made û teknolojiya pêşkeftî, grubên tirk ku betilî bûn û hejmara wan kêm bûn, dest bi lêgerînê kirin di nav kavilên wîlayeta Wanê de, ev jî bi bikaranîna seg û amûrên kolanê yên giran û bi destên rût. Car caran jî daxwaz ji xelkê dikirin bêdeng bin gava bi baweriya wan dengê kesekî ji bin avahiyên hilweşiyayî dibihîzin. Pêşî, Erdogan her pêşniyareke alîkarîkirinê ji aliyê dewletên din red kir ji bilî Îran û Azerbêcanê. Van herdu welatan jî nedikarîn baştirîn made û şiyana lêgerîn û dîtinê pêşkêş bikin. Wezîrê Tendirustiyê yê Tirkiyeyê Receb Akdag, piştî serdana navçeyên zerermend kir got her tiş di binkontrolê de ye `bi gotina rojnameya Hurriyetê: Her tişt baş e. Lê doktorên deverê daxwaza alîkariyên zêdetir dikirin.

**Redkirina alîkariya navnetewî ji aliyê Erdogan bûye sedemê bilindbûna hejmara miriyan.**

Rastiya dijwar li vir ew e ku redkirina alîkariyê ji pêşî de ji aliyê Erdogan bûye sedemê bilindbûna hejmara kuştiyan û zêdebûna wan dengên ku yek li pey yek xilmaş dibûn berî ku grubên rizgarkirinê bi hawara wan ve herin. Erdogan divabû bizanibûya ku piştî her erdhejeke mezin, qet hejmara grubên lêgerîn û dîtinê, konan, alîkarî û dem weke tê xwestin nînin. Neyarên wî yên siyasî wî gunehbar dikin ku ji ber xwe xurt dîtinê, Erdogan bû sedemê kuştina hejmareke zêdetir ya xelkê û êdî ji niha şûnde her çiqasî alîkariyê jî werbigire êdî dereng e. Bi ser de jî dibe ku nasyonalsîtên kurd, Erdogan û partiya wî bi wêya gunehbar bikin ku bi hemd bi awayekî sist çûn hawara wê bextreşiya xwezayî ku hat ser deverên kurdan. Her çiqasî dibe ku ev ne gunehbariyeke rewa jî be, lê kêm caran lîstikên siyasî bi awayekî rewa û bi însaf birêve diçin. Erdogan ku niha hest bi xeletiya xwe ya seretayî kiriye, pêşniyara alîkariyê ji Îsrail, Ukrayna û hinek welatên din qebûl kiriye. Lê ev nabe sedemê vegerandina miriyan li jiyanê û nabe jî sedemê vegerandina dengê xelkê li navçeyên rojhilatê Tirkiyeyê bo AKP.



# Mobîl jîngeha bakteriyan e

Dema bakterî derbasî mobîlê dibin careke din dest bi jiyanê dikin û xurt dibin.

Lêkolerên Koleja London a Zanistên Tendirustî û Pizîşkî gihane wê encamê ku ji 10 mobîlan 9 jê hilgirên corekî bakteriyan in û yek ji wan coran jî bakteriya Îkola ye ku di dema borî de çendîn kes li Almanyayê kuştin.

Di 12 bajarên Brîtaniya de lêkoleran 390 mînakên bakteriyan ji mobîl û destên xwediyên mobîlan girtin. Helbet ji sedî 95 wan kesên ku mînak jê hatine wergirtin dakokî li ser wê yekê dikirin ku ew hertim destên xwe dişon, lê derket holê ku ji sedî 16ê corê wan bakteriya Îkolay bûn ku ji mirovan tên veguhestin û bi paşiya mirovan ve dimînin û êşaneke zêde didinê.

Lêkolînê herwiha amaje daye wê yekê jî ku ji sedî 31ê destan û ji sedî 25ê mobîlan hilgirên bakteriyên xwedî hêza zêrîn in ku bi şêweyekî siruştî di çermê me de hene, lê ev bakterî eger bê veguhestin wê bibe metirsî bi taybet bo wan kesên ku sîstema berxwedana wan lawaz e.

Bi giştî di lêkolînê eşkere bû ku ji sedî 92yê mobîlan û ji sedî 82yê destan hilgirên corekê bakteriyan in. Li gor lêkolînvanan sedema vê yekê neşûştina destan e di dema derketina ji destavan. Dema bakterî tê veguhestin bo mobîlê êdî dubare dest bi jiyanê dike û xurt dibe, ji ber ku ne mimkûn e berdewam ciyê tiliyên mirovan li ser mobîlê bi hesanî bên temîz kirin, heta ev der proteîneke baş jî bo bakteriyan peyda dike.

Paşî bakterî ji mobîlê tê veguhestin bo destan, piştre bo serûçavan û dibe metirsî bo her birîn û nexweşiyeke çerm. Bi taybetî metirsî li ser wan kesên ku mobîlê li hev diguherînin di dema axaftinê de.

Ron Kelter ku îdareya vê lêkolînê dikir û rojekê berî roja navnetewî ya dest şûştinê belavkir, got ku wan têkiliyeke xurt û rasterast navbera gemeribûna destan û gemariya mobîlan vedîtine, lê bi rêya berdewam şûştina destan mimkûne ev pîsî nemîne.

# Kesên ku şekirê wan heye bêtir rastî kanserê tên




Li gor lêkolîneke navnetewî kesên ku nexweşiya wan a şekir heye bi rêjeyeke zêdetir rastî kansera qolon tên, lê nekariye bê zanîn hokarê vê pêwendiya di navbera wan de çi ye, yan divê çi bê kirin bo kêmkirina vê rêjeyê.

Lêkolînvanên zanîngeha California encama 14 lêkolînên navnetewî têkil kirin û gihiştine wê encamê ku kesên ku nexweşiya wan a şekir heye bi rêjeya ji sedî 38 zêdetir rastî kansera qolon tên li gor wan kesên ku nexweşiya wan a şekir nîne.

Herwiha kesên bi nexweşiya şekir dikevin bi rêjeya ji sedî 20 bêtir rastî kansera kulmikan jî tên.

## Xaçepirs

**Çeperast:** 1- Tembûrvan, kesê li sazê dixe – Alet û alava ku li ser bênderan pûş hûr dike. 2- Paşmayî, zadê ku piştî çinînê li erê dimîne – Xak, zemîn, ax – Hurmet, qedr, qîmet. 3- Gurbûna agir, têhna agir – Mezinên dewletê – Bangdana melê. 4- Markayek makyaj û kozmetîkê (berepaş) – Baharatên ku tam û lezîzbûna xwarinê zêdetir dikin (berepaş) – Erd û axa ku xanî li ser tên avakirin. 5- Pronavê yekem – Di muzîkê de ketina deng, bêserûberîya deng. 6- Bi Erebî "civak, cemaet, derûdor" (berepaş) – Fîlmek sînemayê. 7- Wek beranan, dişibe beranan (berepaş) – Kewî, aleta ku kinc pê tên rastkirin (berepaş). 8- Kurtenivîsa "doktor" – Kesê ku erdê cot dike, rêncber (berepaş). 9- Beredayî, eware (berepaş). 10- Evîndara dil, cana min (berepaş) – Tîm, grûp.

**Serejêr:** 1-Bê kar, zugurd, serberdayî – Roja xutbê. 2- Kesê diafirîne, şareza, jîrek. 3- Mêrê bûkê – Qîrîn, zarîn, hawar. 4- Hunermendek Kurd – Damar, kok, çare. 5- Bedel, cezayê xeletî yan zirarekê (berepaş). 6- Na, nabe – Damezrênerê tarîqatek olî ku di sedsala 17 an de li derûdora bajarê Izmîrê derketiye holê (berepaş). 7- Merd, ciwamêr, xweşmêr (berepaş) – Wezîfe, kar (berepaş). 8- Bi Almanî "bakur" (berepaş) – Feqîr, belengaz, şemitî (berepaş). 9- Îsotên rexl, îsotên nûçêbûyî (berepaş). 10- Li Swîsreyê çem û rûbarek (berepaş) – di devê xwe de bir û anî, hûr kir (berepaş). 11- Ne mê, zilam, mêr (berepaş). 12- Du tîpên alfabeyê (tîpa 3 û tîpa herî dawîn). 13- Ast, bergeh, derence (berepaş). 14- Raket, xwe dirêj kir, nivist. 15- Cemidî ye, ne germ e (berepaş). 16- Cephe, hevkarî, tifaq (berepaş).




### Bersivên hejmara 119



# Kişandina cigareyan mirov rastî jibîrkirinê tîne



Ziyanên kişandina cigareyan tenê di derxistina nexweşiyên kujer û demdirêj û kurtkirina jiyanê de kurt nabin, lê dibe sedemê wê yekê ku bîreweriya cigarekêşan xirab bibe û erkên ku divê bînin cih, ji bîra wan herin.

Lêkolîneke zanîngeha Orsambrya ya Brîtanî eşkere kir ku cigarekişandin dibe sedemê wê yekê ku kesê cigarekêş rojane sêyeke wan karan ji bîr bike ku divê wan bicih bîne, lêbelê bi rawestandina cigarekişandinê ji aliyê wan weke kesên ji rêzê li wan tê.

Lêkolîn li ser 70 kesên cigarekêş hatiye kirin, ku temenê wan di navbera 18-25 salî de bû, di demên cihê de daxwaz ji wan hatibû kirin bicih bînin, cigarekêş di bersivên xwe de tenê ji sedî 59ê wan karan dihatin bîra wan ku divabû bicih baniya, di demekê de kesên ku dev ji cigareyan berdabûn 74ê wan karan li bîra wan bû, herwiha kesên normal ên cigarenekêş jî ji sedî 89ê karên wan li bîra wan bû.

Rêveberê lêkolînê Tom Heaver ragehand ku ev lêkolîn di nehiştina cigarekişandinê de sûd jê tê dîtin, herwiha got: Vêga li Brîtanyayê zêdeyî 10 milyonan û li Amerîka jî nêzîka 45 milyon kesan cigareyan dikişînin, ev jî bandoreke xerab li ser karê wan yê rojane dike.

Heaver got lêkolîna wan ya dahatû li ser bandora cigarekişandinê ya xerab li ser bîreweriyê dibe.

Tu jî dixwazî wêneyê xwe li vir bibînî?
Ji me re bişîn: info@rudaw.eu

# KANÎ



Silav û hurmet, navê min Kanî ye û navê xwişka min Raniya ye. Roja 15-10-2011 temenê min bû salek. Ez li Almanyayê dijîm. Dayik û bavê min ji Başurê Kurdistanê, ji bajêrê Duhokê ne. Rêz û silavên malbata min ji bo rojnameya Rûdawê hene.

## Welatê me Akrê



Bajarê Akre dikeve başûrê Kurdistanê. Navê Akrê ji "agir" tê, ji ber ku di demên borî de li Akrê perestgeheke Zerdeştiyan hebû.
Avahî û xaniyên bajarê Akrê tev li ser hev, di kontara çiyê de hatine avakirin, ev jî rengekî taybet dide vî bajarî. Hersal di dema pîrozkirina newrozê de mirov li Akrê rastî wêneyekî balkêş tê: Ji nava bajêr heya serê çiyê şemalk (mûm) li ser rêya berbi serê çiyê bi rêz tên bicihkirin.



Amedekirina rûpela zarokan: Sevda Şafîk

## Wekî hev in....an na?

Cûdabûnên navbera wêneyan de bibîne.





## Tilîşop nasnameya te ne



Dema ku mirov tiliyên xwe bide ser cameke nû şûştî, mirov baştir şopa tiliyên xwe dibîne. Ger mirov bi hûrî bala xwe bide şopan, xêzên her tiliyê ji ya din cûdatir in. Şopa tiliyên her mirovekî jî ne wekî hev e. Polîs jî dema ku li tewanbarekî digere, bi rêya şopên tiliyan hewl dide tewana wan kesan îspat bike.